Demokrasî bo Îranê
Hejmar:2 Decembera 2003

# agirî

Otonomî bo Kurdistanê
Befranbara 1382'e Rojî

Rojnameyeke siyasî û çand ... mokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

## Çima Agirî?

Bo her partî û rêxistinek berpirsyar û pêşenge xebata rizgarîxwazî û neteweyî pir eyan e ku bingeh girtina berpirsayetiya herî mezin eve ye ku bikare rêya geşekirin û pêşveçûna seha neteweyî, têgehiştina ramyarî, çandî, aborî û giştî bi awayek evroyî nîşanî civakê bidet.

Bi berçav girtina wan guhertinên nû ên navxweyî, deverî û cîhanî, hewcehiya têkiliya çire endamên civaka Kurdî li pila yekemda û hevcehiya berfireh kirina pêwendiyên xelkê Kurdistanê û partiya me rojevtir kiriye. Di vê pêvajoyê de Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê biryar daye ku rojnameya ***Agirî*** bikeve meydana kar û xebata rojnamevaniyê û li hev nêzîk bûna bêtir û xebat bo berfireh kirina diyaloga navbera refên civatên xelkê Kurdistanê bi armanc bigire û li meydana kiryarê de gav bi gav û digel hez û hevcehiyên civaka Kurdî ber bi pêş biçe.

Her wekî xuya ye partiya me li bername, rêbaz û çanda siyasiye xwe de, xwe bi hêza serhildayî dinav civakên milyoniye xelkê Kurdistanê dizane û di vê barê de pilan kirina siyaset û piraktîka xwe di çarçoveya qazanc û daxwazên xelkê Kurdistanê de dadirêje. Lewma di serdema nû de bo bizavek neteweyî pêwendî û ragehandin bi zarave û binzaraveyên gelêrî xasmanî ku gel xwediyê zimanê standarda xwe nebe, li nan û avê bêtir xuyaye.

Armanca destpêkî ya rojnameya ***Agirî*** nasandina siyaset û ramanên PDK Îranê û bizava azadîxwaziya Kurdên vê para Kurdistanê, bi civakên Kurmancîaxiv ên hemû parên dine Kurdistanê ye. Wekî xuyaye eva cara yekem e ku partiya me bi awayek fermî bi zaraveya Kurmanciya jorîn rojnameyek han diweşîne, lewma siruştiye wek gava yekem kêmasî, şaşî û xeletî tê de hebin. Lê her gavek nû digel xwe hinek berpirsayetî û kêmasiyan tîne û dema rêya xwe dom bike, ev kêmasî vê cihê xwe bi geşe kirin û berfirehiyê bidin. Lewma beşdariya xwendevan, nivîskar û rewşenbîrên neteweya me vê ciheke taybetî li pêgehandina Rojnameya ***Agirî*** de hebin.

Birêz Mistefa Hicrî li cejna Pêşmergên Kurdistanê de:



***Em li vê rojê de, pîrozbahiyê li hemû pêşmerge yan dikin û serê rêz û hurmetê li hemberî wan Pêşmerge ên ku li pêxema azadî û serbestiya gelê xwe de canê xwe gorî kirin e diçevîn in.*** **doma wê 2**

# Erd hejê dîsan bûyerek mezine mirovî afirand



Kela dîrokî ya "Erg" li bajarê Bem'ê li erdhejê de wêran bû

Demjimêr 5:28 deqîqên berespêdehiya roja Înê, 5ê Befranbara 1382'ê Rojî, 26.12.2003'ye Zayînî, erdhejek ku rijdiya vê 6/3 pileyên rîşterê bû, bajarê ***Bem*** li parêzgeha Kirman ya Îranê hejand. **doma wê 13**

## Mistefa Hicrî:

# Eger serdemekê çiya û daristan çepera Pêşmerge an bûn, niha hemû zanîngeh, xwendingeh, mizgevt, bazar, kargeh bûne çepera Pêşmerge

**Roja 26'ê Sermawez'a 1382 ya îsal, bo rêz girtin ji 26'ê Sermawez'ê (roja Pêşmerg'ê Kurdistanê) li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê rê û resemekî berfireh bi pişkdariya sedan kes ji xebatklarên demokart pêk hat. Di vê rê û resmê de hevalê xebatkar Mistefa Hicrî, endamê Deftera Siyasî derheq rolê pir li şanzaniye Pêşmeg'e li bizava azadîxwaziya Kurdistanê û rewşa nihaye Kurdistan û Îranê peyvî, ku eva jêrîn deqa wê axaftinê ye:**

**Xûşk û birayên rêzdar!**
**Pêşmerge yên xebatkar û xweştivî!**

Îro 26'ê Sermawez'ê bîr anîna salvegera 26'ê Sermawez a 58 sal berî niho li bajarê Mehabad'ê ye. Sala 1324'ê (1945é Zayînî) li rojek mîna îro de Bajêrvaniya Mehabad'ê kete ber êrîşa xelkê bêzar ji hukûmeta Pehlewî û hate desteser kirin.

Her qas di vê êrîşê de mirovek welatparêz û cangorî bi navê Ebdula Mîne Xalindî canê xwe ji dest da, lê belê nîşaneya dawî a deshilata rejîma Pehlewî temirî û tenahiya bajar kete destê xelkê de. PDK Îranê ji bo zindî ragirtina bîra vê roja dîrokî û rêz girtin ji rolê Pêşmerge ên seranserê Kurdistanê li bizava azadîxwazî a Kurdistanê, li sala 1363'an de ev roje bi navê ***Roja Pêşmergê Kurdistanê*** diyarî kir. Ji vê demê ve hetanî îro em hemû salê li 26'ê Sermawez'ê, li rê û resmek bedev de pişkdariyê dikin, li ber vê çendê ku cangorî, emegdarî û zehmeta Pêşmerge yên qehreman her zindî û bilind ra bigirin. Îro jî em her bi vê meremê li hev civiyan e. Ji ber vê çendê ez iznê dixwazim, ji aliyê Deftera Siyasî a Partiya xebatkare me û ji aliyê ve hemû pişkdarên birêze vê rê û resmê, em pîrozbahiyek germ ji hemû Pêşmerge yên Kurdistan a Îranê bikin û serê rêz û hurmetê li hemberî wan Pêşmergên ku li pêxema azadî û serbestiya gelê xwe de canê xwe gorî kirin e biçevîn in.

Mixabin li Kurdistana Îranê bi sebeba zilm û zordariya hukûmeta dîktator û girûpeke paşverû ku zirawa wan ji navê Pêşmerge diteqe, xelkê xweştivî û Pêşmerge perwere me nikarin li rê û resmek wiha eşkere de li dewra hev kom bibin û hesta hez kirin û hurmeta xwe ji bo xurtên xwe ên Pêşmerge bidine nîşan dan. Lê bêşik bi dûr ji çavê kirêgirtî ên rejîmê û bi her awayekê ku ji destê wan bihêt, seha dilê xwe bo Pêşmerge û malbatên wan eyan dikin.

Renge ji bo hin kesan peyva Pêşmerge, tenê bîr anîna wan xurtên bi hest û xebatkar be ku çeka şerefê hilgirtine û carna êrîşê dikine ser parêzvanên dîktatorî û tarîtiyê, û xewê ji çavên wan direvîn in. Ev terze bîr kirine ji Pêşmerge rast e, lê hemû Pêşmerge wisan ninin, ji ber ku peyva Pêşmerge bi wateya hemû ewan mirovên şoreşvan e ku li pêxema azadî û serbestiya gelê xwe de hazir in jiyana xwe ku destmaya herî biqîmet û xweştiviye jiyana wan e gorî bikin û di vê pêxemê de xebatê dikin.


Dîmenek ji pişkdarên rê û resmê

Bi vê wateyê, ev pişke ji xelkê azadîxwaze Kurdistanê ku li jêr tepeseriya Komara Islamî de li hember vê rejîmê de berxwedanê dikin û bo nehêlana sîbera biyome vê rejîmê li ser xelkê xwe, xebatê dikin, li rewşekê de ku dizanin gav hilgirtina di vê rêyê de renge evan tûşî girtîgehê, îşkencê û heta li dar ve kirinê jî biket, her Pêşmerge ne. Ji ber vê çendê Pêşmerge bi qasekî zor in ku nahên hejmartin û eger serdemekî çiya û daristan çepera Pêşmergan bûn, niha hemû zanîngeh, xwendingeh, mizgevt, bazar, kargeh û bûne çepera Pêşmerge li hember dîktatoriyên zal bi ser Kurdistana Îranê û Îranê de.

**Hevalên birêz!**

Civîna me li devra hev bo rêz girtin û bîr anîna vê roja pîroz li halekê de ye ku guhertinek kûre siyasî û hemû aliyane bi ser cîhan û bi xasmanî bi ser devera me (Rojhilata Navîn) de têt. Bahozek bihêz û bilez rabûye û hemû astengên ser rêya xwe wêde dibe, asteng, deshilatên Paşverû, hukûmetên Kevneparêz, girûpên dijî mirovî û dijî gelî ne. Evên ku dikarin xwe li tev vê pêvajoyê hevdeng bikin, xwe nû bikin û bikarin bibine deste û girûpên serdem, dikarin ji vê bahozê û guhertina bihêz bi qazancê gelê xwe mifahê lê werbigirin, lê evên din sûçbar in bi ji nav çûnê.

Me li heyamê çend salên derbasbûyî de givaşa vê bahozê li derdora xwe û berevajî deshilata hukûmetên kevnarperwer dîtiye. Çend salan berî niha hukûmeta Mela Umer, ku xelk qenarê (dar ve kirin) dida, ridîna wan heke ji qasê bihostekê kêmtir bûya, dêxistin hepsîxanê. Welatê xwe kiribûne bendîxaneya jinan: Jinên ku mêrên xwe li rêyên deshilata wan de ji dest dabûn, izna şol kirina van nedidan ku zarokên xwe ên sêvî û sexîr xayî bikin. Rewşek pêk anî bûn ku jin di nava civaka Paşverûya Efxanistanê de zilmek zor li wan hatibû kirin. Me dît ku çawa ji nav çûn û niha em dibihîsin her rojekê li cihekê yan li kuncekê de alîgirên wan tên gitin û teslîmê edaletê dikin û dihên mehkeme kirin. Yek ji deshilatên herî xwedî hêze deverê hukûmeta Beis ya Îraqê bû, me dît 9 mehan berî niha, li heyamê 20 rojan de hukûmeta Îraqê herifî û serokê vê hukûmetê Sedam Husên çend rojan berî niha bi zelûlî û bê deshilatî hate girtin.

Eve qedera wan hukûmet û deshilatane ye ku şiyana hevreng kirina xwe tev wan guhartinan çi ninin. Me dît ku xelkê Efxanistanê û Îraqê çi qas şa bûn, şahî û dîlan kirin bo wan serketinên ku bi dest ve anîn, ji wan pîroz be.

Niha ev kiroveya ber bi ku diçe? Ber bi hemû wan hukûmetane ve diçe ku bi vî terz û sîstemê ne, yek ji wan hukûmetan, Komara Islamî a Îranê ye. Erê tu bêjî dengê vê kiroveya bihêz gihîştibe guhê Wilayeta Feqîh û kesên der dora wî? Ceribînên rabihorî dibêjin ku dîktator zor nezantirin ji vê çendê ku dengê wan kiroveyan bibihîsin. Guhê wan li hember nû bûn û guhertinan de ker e û heger rojekê vî dengî bibihîsin, vê hinde direng bibe ku êdî taze pêre nagihîjin. Mîna vê ku me bihîst Mihemed Riza Şa li demên dawiyê de da zanîn ku dengê xelkê bihîstiye, lê zor direng bû.

Ecêbe ku li pêwendî tevî girtina Sedam Husên de, Xameneyî dibêje: ***"Girtina Sedam Husên çîrokeke pir ji şîret e"*** xameneyî dibêje: ***"Ev çarenivîsa hate serê Sedam Husên, dê bihête serê hemû wan dîktatoran ku guhê wan li dengê xelkê nine".*** Evên ku dibe bi xwe şîretan werbigirin, niha xelkê nesîhet dikin. Niha jî mijûlî rêve birina maşkanêyeke dubare bi navê ***Hilbijartina Meclîsa 7'ê*** ne, em hemû dizanin û xelkê Îranê şahidin ku her li destpêka pêkhatina hukûmeta Komara Islamî a Îranê, vê hukûmetê du pişk hebûne ku pişkek bi navê Meclîs û heyeta dewletê û Serok Komarî ku bi nav li hilbijartinê de hatine hilbijartin û anîne ser kar, bo vê çendê ku li hember xelkê cîhanê û hinek xelkê safîloke Îranê jêsta demokratîk bi xwe bigirin. Lê evên ku ji destpêkê ve hetanî niho hukûmet kirin e û deshilat li destê van de bûye, girûpek paşverû û dijî gelî ne, ne bawerî bi demokrasiyê hene û ne bawerî bi Meclîsa Şêwra Islamî hene ku bi xwe ava kirine, ne

→

bawerî bi dengê xelkê hene, heta ku iznê bidin xelk nonerên xwe hilbijêr in û ji bo vec girtin ji dengê wan û nivîsîna zagonê ji wan re hurmet bê girtin

Heyamekê maşkanêya xwe bi Reformxwazî ducarkî kirin, hin kes xuya bûn bi navê Reformxwaz yan Reformîst li hember girûpa din de, bo vê çendê ku bazara hilbijartinê germ bikin, li hilbijartina gera yekem a Serok Komarî a Xatemî de, ev hêcete gihîşte hawara wan û xelk hay da bo pişkdarî kirina li hilbijartinê de. Vê demê digotin Meclîs hemû li dest parêzvanan de ye. Heger nonerê Reformxwazan bihên hilbijartin û piraniya dengan bi dest ve bînin dê welat bikene biheşta fireh û azadî û demokrasiyê wê ji xelkê re bi diyarî bînin. Lê bi şahidiya hemû xelkê cîhan û Îranê, me dît ku xelkê bi dengê xwe Reformxwaz anîne Meclîsê, lê her li roja yekem de pêşiya karê wan hate girtin.

Yek ji zagonên herî kevnarperwerane a Komara Islamî, Qanûna Weşanan bû. Reformxwzan pêş vê ku li Meclîsê piraniya dengan hebin soz dabûn ku eger bihêne Meclîsê de vê zagonê biguher in. Lê her ji yekem rojên destpêka karê van de Weliyê Feqîh bi nivîsekê da eyanê ku mafê ve nine bas ji guherîna Qanûna Weşanan bikin û ev destûre bi navê hikmê hukûmetî, bû Sedema vê çendê ku kes nekare basa vê zagonê biket. Piştre hate xuya kirin ku li Meclîsa 6'ê de, zor gelale û pêşniyaz hatin gorê. Lê piraniya wan ji aliyê Şêwra Nobedar ve hatin ret kirin.

Em li wî heyamî de şahidê cangorî û cesûriya hejmareke zaf ji endamên Meclîsê bûn. Bi xasmanî ez hez dikim ku îşare bi cesûrî û dilsojiya pişkek ji nonerên Kurd bikim ku Feraksiyonek bi navê ***Feraksiyona Kurdan*** pêk anîn. Lê me dît ev nonerane tevî vê hemû cesûrî û netirsiya xwe çawa hatin sivik kirin, çawa pişka dadê mîna kopalekê li hindav serê wan noneran bû û zû zû ev gazî dikirine dadgehan û hurmeta wan dişikandin, niha em dibînin ku eva heyameke li her cihekê ev nonerên ku bixwazin tevî xelkê biaxivin, civînan saz bikin, çend kesên kopal bi dest, ku kirêgirtî ên girûpên paşverû ne êrîşê dikene ser wan û hurmeta wan dişkênin. Li malên wan de bi telefonan gefan li wan dikin, defterên wan têne şewitandin. Başe vê Meclîsê tevî cesûriya hejmarek ji noneran kariye çi bandorekê danê, deskevtek bo xelkê hebe ku niha Komara Islamî a Îranê dixwaze carek din xelkê li ser sindûqên deng danê kom biket? Vê Meclîsê neku her nekariye gavekê bi qazencê xelkê hilbigir e, bi xasmanî nonerên Kurd li Meclîsê nekarîne karekê bikin, belkî em dibînin roj nine ku li gund û bajêr û sînorên Kurdistanê xelkê birsî û der bi der bi destê hêzên leşkerî nehên kuştin, lê nonerên Meclîsê tevî hemû gazî û hawara xwe li vê pêwendiyê de nekarîne pêvajoya wan kuştiyên bê dadgehî û bê lêkolîn bidin sekinandin. Li pêwendî tevî Kurdistanê, avadan kirin, budce û ev deshilatên ku dibe bidene destê xelkê Kurdistanê nekarîne çi gavekê hilbigirin.

Baş e Meclîsekî wisa, nonerekî wiha bi hemû cesûriyekê ve çi bandorek dê hebe? Lê zerera Meclîsê yekcar zor e. Zerera vê eva ye ku rejîmê ev Meclîse mîna sîperekê daye pêşiya xwe, li bin navê vê Meclîsê de xwe weşartiye, eger tê gotin welat dîktatorî ye, dibêj in me hilbijartin heye, me Meclîs heye û xelk deng didin vê, Serok Komar ji aliyê xelkê ve tê hilbijartin, xelk Şêwra Bajaran hildibijêr in, xelk li deshilatdarî û hukûmetê de pişkdar e. Ez dibêjim hêcetek, ji ber vê çendê ku welatên Ewropayî ku zaftir li çarçoveya parastina wê û qazancên xwe de dixebit in, Komara Islamî mîna hukûmetek demokratîk dêxine ber çavê xelkê. Zor caran nonerên me li derveyî welat bas ji zilm û zordariya Komara Islamî û wan zilm û stemane dikin ku li ser gelê Kurd dihêt kirin, ev dibêjin hûn xwediyê Meclîsê ne, ve Fereksiyona Kurdan heye, ev dengê ve li vê derê radigihîn in, ev ji ve berevaniyê dikin. Li navxweye Îranê de jî xelk bi vê yekê mijûl kirin e, her rojê hilbijartinek e. Hilbijartinên bê bandor, xelk deng bidet yan nedet, ev pergala hukûmeta xwe didomînin.

Hukûmeta Komara Islamî heta heyamekê karî xelkê derveyî welat û parek ji xelkê Îranê bi vî awayî û bi vê maşkane yê bilêbîn e. Lê niha piştî 25 salan serdemê vê yekê hatiye, xelkê destê rejîmê xwandiye. Êdî Komara Islamî ne bi navê berevanî kirin ji Islamê, ne bi navê berevanî kirin ji azadî û demokrasiyê û ne bi navê berevanî kirin ji hilbijartinan nikare xelkê bilêbîne. Hilbijartina vê dawiyê a Şêwran, mînakek baş û bihêz bû ji vê dîtin û ramanê re.

Bi îdiaya wan bi xwe 10 li sedê ye xelkê Tehran'ê li hilbijartina Şêwran de pişkdarî kirine. Li halekê de zêrevanên bê alî li ser vê bawerê ne ku 5 yan 6 li sedê zêdetir pişkdarî nekirine. Bêşik ev kesane jî ku li vê hilbijartinê de pişkdarî kirine komek in ji kesên derdora wan û kopal bi destên wan in, her ev kesane ne ku êrîşê dibene ser nonerên azadîxwaz, êrîşê dibene ser rojnamevanan, êrîşê dibene ser mirovên demokrat û azadîxwazên welat. Niha ev êrîşên wan dîsa dest pê bûne. Bêşik maşkanêya xwe bi terzên cur bi cur bi rêve dibin. Bi navê cudatiyên olî, bi navê neteweyên cur bi cur, di navbera deste û gurûpan, rikeberiyê di navbera xelkê Îranê pêk tînin. Li ber vê çendê ku xelkê bikêşe ser sindûqên dengdanê, vê demê Fîlman ji wan hilbigirin û wan fîlman bêxin ber çavên xelkê cîhanê, ku belê xelkê cîhanê! Bizanin xelk bersiva gaziya wan didin û li ser sindûqên deng danê berhev in, eva berjenga azadî û demokrasiyê ye. Lê wek min bo ve eyan kir, xelkê kariye destê rejîmê bixwîne. 25 salan xapandin û lêbandin bes e û êdî serdema vê ne may e. Hin deste û gurûpên nav hukûmetê de dibêjin bila xelk pişkdar be, propagende dikin bo vê çendê ku Meclîs hevgirtî û yekdest be, aliyê kêm bila hin Reformxwaz tê de bin. Gotina me eva ye: Ma demekê ku piraniya zor ji noneran Reformxwaz bûn, karîn çi bikin? Heger çend kesên din kêm yan zêde bin, ma dûr ji vê çendê ye ku Meclîs bi her pêkhatekê û bi her cure nonerekê ku tê de pişkdar be, çi bandorek li ser terzê hukûmetê û sîstema deshilatdar de tu neye.

Evên ku hukûmetê dikin, evên ku zagona bingehîn dinivîsînin û evên heta li hemberî vê zagonê ku bi xwe danîne dirawestin, her gurûpeke paşverû ya pişt perde ne. Ji ber vê çendê em bawer in ku ***pişkdarî kirin li hilbijartina Meclîsa 7'mîn de li jêr her navekê, bi her hêcetekê, tenê bi vec û qazanca Komara Islamî a Îranê ye.***

Zaf caran hin kesên neyarên Komara Islamî egeran tînin û dibêjin: Bila em herin ser sindûqan û li hilbijartinê de pişkdar bin, lê dengê sipî bidin, lê ev jî her bi vec û qazancê rejîmê ye. Ji ber ku bo Komara Islamî zor girîng nine ku li wan kaxizên hilbijartinê de çi tiştek tê nivîsandin, yan çi dêxine nav sindûqan de, ji wan re girîng eva ye ku xelkek zor li refa hilbijartinê de rawestin û ev jî fîlmê ji wan hilgirin û bêxin bar çavê xelkê cîhanê, bo vê çendê ku xwe bi demokrat binasînin û bêjin ku xelk tev rejîmê arîkariyê dikin, li birêve birina welat de pişkdar in, ji ber vê çendê daxwaza me ji xelkê xebatkar û têgihîştî û şiyare Îranê bi giştî û bi xasmanî xelkê xebatkare Kurdistanê eva ye ku li roja hilbijartinê de li malên xwe de bimînin û neçin ser sindûqên deng danê. Evên ku xwe berbijar kirine berbijariya xwe werbigirin, ji ber ku hurmeta wan bihête parastin û nebin emrazê propagendeya rejîma Komara Islamî a Îranê.

Li gor wan sedeman û zor egerên din, ku em nikarin hemûyan bînin ber basê, PDK Îranê hilbijartina gera heftemîn a Meclîsa Şêwra Islamî "tehrîm" kiriye û daxwaza vê çendê diket ku xelk li hilbijartinê de pişkdariyê nekin.

Em hêvîdar in ku ceribandina derbas bûyî, zilm û zora ku gurûpek ne hilbijartî û dasepayî bi ser xelkê de cuda ji çarçoveya hilbijartin û Meclîs û Şêwran de bi ser xelkê de disepînin, dibe sebeba vê çendê ku heta kirêgirtiyên Komar Islamî jî di hilbijartinê de pişkdariyê nekin û bi wî awayî xelkê Îranê bi hukûmeta Komara Islamî û bi hemû xelkê cîhanê û bo cara çendê eyan bikin ku ev hukûmet, hukûmeta xelkê nine, ev hukûmetek dasepandî û dijî gelî ye, ev hukûmeteke ku tenahî û rihetî ji xelkê Îranê re nehêlaye û rêya vê her eva ye ku biherife û ji nav here. Em hêvîdar in meşa azadîxwazî û demokrasiyê welatê me – Îranê jî – bigire ber xwe, û qedera dîktatoriyê li Îranê her ev qedera be ku li ser dîktatorên dinê ye deverê de hatiye.

Me çi şikek li wê hindê de nine, ji ber ku pêvajoya bûyeran û guhertinan ber bi pêş, ber bi demokrasî û azadiyê, ber bi deshilata xelkê û hiloşîna çarçoveya deshilatên totalîter li deverê diçin. Eve hetmen vê bibe mizgîniyek bo hemû xelkê, bi xasmanî bo Pêşmergên xweştivî û cangorî, bo malbatên wan û bo wan Pêşmergên ku li pêxema vê rojê de ku Komara Islamî biherifît, canê xwe gorî kirin. Bi hêviya vê rojê, hindî zûtir.

Ez pir siasê ji ve hemûyan dikim, carekî din roja 26'ê Sermawez'ê, roja Pêşmergên Kurdistanê, li ve û li hemû xelkê Kurdistanê pîroz be.

# Basek derheq mafên mirovan û mafê gelan li Îranê, li Konferanseke Parlemana Biljîk'ê de

Roja 2'yê December'a 2003'e Zayînî, li ser pêşniyaza Enîstîtûya Kurd li bajarê Birûksel'a paytextê Biljîkê û bi arîkariya Parlemana vî welatî, konferansek li jêr navê rewşa mafên mirovan û mafê gelan di Îranê de li yek ji salonên Parlemana Birûksêlê hate li darxistin.

Serokatiya bi rêve birina vê konferansê li stûyê birêz Jan Bêgên, yekemîn cîgirê serokê Parlemana Biljîkê bû, û her weha nêzîk 120 kes ji hevwelatiyên Kurd, Fars û Azerî ên Îranî, û hejmarek ji Kurdên parên din ên Kurdistanê û bi xasmanî hejmareke berçav ji kesayetiyên siyasî ên Biljîkê û her wisan Parlemantêr, Sinator û Rojnamevan di vê konferansê de pişkdar bûn.

Konferans demjimêr 2'ê piştînîvro bi axaftina birêz Derwêş Ferho serokê Enîstîtûya Kurd li Birûksel'ê dest pê kir. Birêz Derwêş Ferho, tevî bi xêr hatin kirin ji pişkdaran, derheq vê yekê ku kariye bi cehd û têkoşîna hevkarên xwe li Enîstîtûya Kurd li bajarê Birûksel'ê, û bi arîkariya dilsojane û bê mînake birêz Jan Bêgên serbarê dijberî û nerazî bûna hejmarek ji rayedarên dewletê, vê konferansê bi rêve bibe, kêyfxweşiya xwe da eyan kirin.

Birêz Derwêş Ferho li dirêjiya axaftina xwe de û li derbarê nirxandina mafên mirovan û mafên neteweyên Îranê de got: Li rastî de eva ku li dema bi deshilat gihîştina melayan li vî welatî de li warê mafên mirovan de bi rêve çûye, tiştek ji bilî cinayeta dijberî mirovahiyê nebûye.

Piştre birêz Jan Bêgên wek serok û bi rêveberê esliye vê konferansê di peyvînekê de tevî îşare kirin bi bin pê kirina berdewam û tund a mafên mirovan û azadiyên sivîl ên xelkê Îranê bi giştî û bi xasmanî bin pê kirina mafê neteweyî û kêmaniyên olî li Îranê de, ji aliyê rejîma Komara Islamî ve got: Xelkê Îranê biryara pêk anîna guhertinên kûr û bingehîn li deshilatê de ne û em Ewropayî jî ku xwe bi demokrat dizanin, vezîfeya me ye ku em kiryarên xwe û axaftinên xwe li derheq mafê mirovan bikin yek û çi din bi nermî tevî vê rejîma ku xelkê welatê xwe tepeser diket, ne livin, bi xasmanî ku xelkê Îranê ne tenê carekê, belkî zaf caran bi eşkereyî rewayî û berheq bûna rejîmê birine bin pirsyarê.

Tewera basên vê konferansê pêk hatîbûn ji:

-Rewşa kêmaniyan li Îranê de, û riftar û siyasetên rejîmê derheq mafên wan

-Rewşa mafê Jinan li Îranê de

-Daneberheva rewşa Îranê li kawdana navneteweyî a niha de

-Rewşa Kurdan li Îranê de

Ev kesên ku derheq mijarên konferansê axaftin kirin evana bûn:

-Kekê Xusro Ebdullahî nonerê PDK Îranê li derweyî welat ku derheq rewşa Kurdan li Îranê de axaftin kir.

-Kekê Ezîz Mamlê, Mafnas, ku derheq rewşa kêmaniyan li Îranê de û çawaniya riftara Komara Islamî tev wan ji pişikdaran re axivî. Kekê Ezîz derheq mafê kêmaniyan ji dîtingeha mafê navneteweyî û peymanname û konferansên navneteweyî ve axivî. Wî riftar û kiryarên Komara Islamî di vê derheqê de bi tirajîdî û cinayet hesiband û di warê mafê Kurdan di Îranê de got: Di wî welatî de (Îranê) Kurdan ne tenê tu mafek ji wan re nehatiye berçav girtin, belkî bi awayên herî hovane ji aliyê rejîmê ve têne tepeser kirin û mafên wan tên bin pê kirin.

-Xatûna Azade Kiyan, arîkara mamostayê zanistên siyasî li zanîngeha Parîs'ê û lêkolînvan li pişka Îranê û karnasa pirsgirêkên Îranê. Yek ji wan kesan bû ku gotar pêşkêş kirin. Tewera basa navbirî derbarê mafê jinan di Îranê de bû.

-Xatûna "Firanso Birye" jî berpirsyarê Firanseyî ya saziya ajansa navneteweyî ji bo hevkarî û dadperweriyê li derheq mafên mirovan li Îranê de şîroveyek pêşkêş kir.

Evê rêzdarê tevî îşare kirin bi çend mînakên berçave bin pê kirina mafê mirov li Îranê de wek daxistina rojnaman, girtina rojnamevanan û xwendekaran, îşkenceya di girtîgehên rejîmê de, tepeserî û tund û tîjî, kevir baran û li dar ve kirina li berçavê xelkê û der kirina hikmê li dar ve kirinê, bin pê kirina berdewame mafê gelê Kurd û tepeserkarî û zext û givaşa li ser wî gelî ji aliyê rejîma Komara Islamî ve û her wisan îşare bi îdama xebatkarên Kurd jî kir.

-Birêz "Ludo Abîxt" Dukturayê Felsefê û karnasê kar û barên Rojhilata Navîn li derheq Îranê û bandora vê li hevsengiyên herêmî û navneteweyî de şiroveyek pêşkêş kir.

Hejî gotinê ye ku li dawiya her basekê de, heyamek jî bo pirs û bersivan hatibû danîn ku her yek ji pêşkêşkerên basan, di warê basa xwe de bersiva pirsyarên pişkdaran dida.

Konferansê demjimêr 6:30'ê êvarê dawî bi karên xwe anî.

## Deqa axaftina nonerê Partiyê, Kekê Xusro Ebdulahî, li Parlemana Biljîk'ê:

## Rewşa Kurdan li Îranê de

**Serokê rêzdar! Xûşk û birayên xweştivî! Hevalên xweştivî!**

Berî her tiştekê izna min bidin ku bi navê PDK Îranê ve, sipasê ji berpirsyarên Enîstîtûya Kurd li Brûksel'ê bikim, her wisan ji berpirsyarên Parlemana Brûksel'ê, bi xasmanî sipasê ji birêz Jan Bîgin, cîgirê yekemîn yê Serokê Parlemanê bikim, ku rewş bo li dar xistina vê konferansê xweş kirin.

Xûşk û birayê hêja! Îranê ku pitir ji 70 Milyon xulyaqet heye, welatekî pir neteweyî ye ku tê de neteweyên Fars, Azerî, Kurd, Belûç, Turkman û Ereb bi hevre dijîn û her yek ji wan xwediyê rewşt û tîtal, ziman û çanda taybet bi xwe ne. Li Îranê Neteweya Fars xwedî pênas e û bala destin, deshilatdarên Îranê, bi taybet ji serdemê malbata Pehlewî ve, tenê izna vejîn û pêş de birina ziman û çanda neteweyiye gelê Fars dane. Bi awayekê ku îro zimanê Farsî kite zimanê fermiye elimandin û hîn kirinê li Îranê ye. Ji aliyekî din ve daxwaza gelên din yên Îranê bi merema fermî nas kirina pênase û mafê neteweyiye wan, her tim bi zimanê tepeseriyê hatiye bersivandin.

Neteweya Kurd 16 li sedê ye xulyaqetê Îranê pêk tîne, yanî pitir ji 11 milyon kesî ku nêzîk 3 milyon kes ji vê xulyaqetê li derveyî welêt dijîn. Bi taybet li bajarê Tehran'ê û parêzgeha Xurasan'ê, Kurdên Xurasan'ê ku nêzîk 1/5 milyon kesî dibin li destpêka sedsala 17'e zayînî de ji aliyê Şa Ebasê Sefewî ve bo wê deverê hatine dûrxistin.

**Gelî hevalan!**

Rûberê Kurdistana Îranê ku nêzîk 125 hezar Kîlometr a çargoş e, ji aliyê hukûmeta navendî ve bi ser çar parêzgehan de hatiye par ve kirin, ku pêk hatiye ji Azerbaycana Rojava, Kurdistan, Kirmaşan û Îlam, her wekî xuya dike tenê yek parêzgeh ji aliyê hukûmeta navendî ve bi Kurdistan tê hesibandin ku pêk hatiye ji pişka navendiya Kurdistana Îranê, ku bajarê Sine navenda vê pişkê ye.

Neteweya Kurd yek ji neteweyên herî bê pare Îranê ye, vê neteweyê ku her li serdemê rejîma Paşatiyê de gefa terzên herî tund û tîje tepeseriyê li wan dihate kirin, piştî bi deshilat gihîştina Komara Islamî jî her wisan zilm û zordarî derheq wan tê kirin, bi awayekê ku niha ji mafê herî serekeye xwe bê par in. Piştî tevgera sala 1979'a Zayînî ev rejîma ku di Îranê de bû bi deshilatdar, li warê daxwaz û xwestikên Kurdan ku daxwaza bi fermî nas kirina pênasa neteweyiye xwe bûn, piştî dest pê kirina 6 mehan bi navê got û bêjê, li encam da her mîna rejîma berê hawara xwe bire ber siyaseta tepeser kirinê û hêza leşkerî bi dijî vî neteweyî bi kar anî, heta vî cihî ku Xumeynî li roja 28'ê Gelawêj'a sala 1358'e Rojî (1980) de hikmê cîhad derheq bi vî neteweyî der kir. Li encama vî hikmî de hêzên leşkeriye rejîmê bi awayekî berfireh êrîş kirine ser Kurdistanê û ji rêya erdî û esmanî ve, bajar û gundên Kurdistanê bombebaran kirin. Ji vê demê hetanî niha, pitir ji 10 hezar kes ji xelkê sivîl û bê guneh çi ji rêya bombebaran kirina esmanî û êrîşa erdî, çi ji rêya kuştinên bi kom û çi ji rêya îdam û îşkencê di girtîgehên vê rejîmê de canê xwe ji dest dane. Bi sedan hezar Kurd li encama tepeserî û tund û tîjî ên rejîmê, neçar mane ku welatê xwe bi cih bihêlin. Pitir ji 900 hezar kesî bera xwe dane bajarên mezine mîna Tehran, Tewrêz û Kerec û . . .hwd. Bi awayekê ku îro 800 hezar Kurd li Tehran'ê dijîn, nêzîk 15 hezar kes li Kurdistana Başûr û 13 hezar kes jî li Başûrê Îraqê de

bûne penaber. Nêzîk 40000 kes wek penaber li Rojava de dijîn, 500 gund li Kurdistana Îranê de hatine kavil kirin yan jî ji xulyaqetê vala kirine.

Li Gelawêj'a sala 1358'e Rojî (1980) hetanî niha li rastî de Kurdistan bûye girtîgehekî mezin bo gelê Kurd. Zilma neteweyî perên xwe bi ser hemû aliyên siyasî, aborî, civakî, çandî û . . .hwd, ên xelkê Kurd de kêşaye. Hemû partî û rêxistinên siyasî li Kurdistanê hatine qedexe kirin, komek Pasdar û Meimûrên nepenî û Îtilaatî (êstixbaratî) ên rejîmê bi ser jiyan û malê xelkê de hikimdariyê dikin. Tewahiya rayedarên derece bilinde deverê xelkê biyanî ne û ji Tehran'ê ve têne diyarî kirin. Her çi qas niha axaftin bi zimanê Kurdî sûç nine, lê belê xwandin bi vî zimanî niha jî her qedexe ye û tenê zimanê Farsî li Îranê zimanê fermî ye. Kurdistana Îranê niha jî yek ji herêmên herî paremayiye Îranê ye û ji çavkaniyên sanetî (pêşesazî) tu basekî wisan li holê nine. Tenê derxistina petrol'ê li Kirmaşan'ê de nebe ku ev jî bi kiryar ji amrazên saneta "Istixracê" bê par e. Eva li halekê de ye ku xwediyê çavkaniyên dewlemend û mezin e.

Di nava dehan kargehên sanetî li Îranê, tenê yek ji wan kargehan jî li ber Kurdistanê neketiye, ji wan çend milyard Dolar dahata Îranê ku pişkeke zaf ji rêya wî welatî ve bi dest tê, Kurdistanê tu behreyek jê nebiriye. Çimkî rayedarên rejîmê ji her terze sermaye danînekê li vê deverê xwe diparêzin, bi awayekê ku qasê bêkariyê 40 li sedê ye xulyaqeta çelenge Kurdistanê bi xwe ve girtiye. Rejîma Melayan bi vê çendê jî qenaet nakin û bi eşkere mijûlê belav kirina mewadên bêhişker (muxedirat) di nava ciwanan de ye. Bi terzekê ku îro mifah wergirtin ji wê mewadê bo malbatên Kurdistanê bûye tilismek.

**Hevalên hêja!**

Ez bi hewce dizanim lêre de îşare bi kiryarên terorîstî ên vê rejîmê çi li hundir û çi li derveyî welat bi dijî neyarên xwe bi taybet derheq bi rêber û xebatkarên Kurd kirin e, bikim.

Lêre de bi egera dirêj nebûna vê mijarê, di navbera sedan mînakan de, ezê tenê du nimûneyan bînim. Nimûna yekem kuştina Dr. Qasimlo Sekreterê Giştî yê Partiya me û du kes ji hevalên wî li 22'yê Pûşpera sala 1368'e Rojî (1989) li Viyen'ê û li ser kursiyê got û bêjê bi destê hinartiyên rejîma Îranê ku bi navê diyalog û peyda kirina rêçareyek bo çareseriya doza Kurd li Îranê hatibûne şandin.

Nimûneya duyem kuştina Dr. Şerefkendî – cîgirê Dr. Qasimlo - û sê kes ji hevalên wî li 26'ê Xermanana sala 1371e Rojî (1992)li Berlînê de ye. Hejî gotinê ye ku dezgeha Dadê ya Almanya, piştî 4 salan lêkolîn, di encamê de li 10'ê Avrîla sala 1997'e Zayînî hikmê xwe yê dawiyê der kir û bi anîn û eşkere kirina sedem û belgeyên haşahilnegir, da selimandin ku rayedarên herî derce bilind ên Komara Islamî a Îranê serokatiya, teror û cinayeta han kirine. Bi kurtî siyaseta tepeserkarane ya vê rejîmê li destpêka hatine ser karê vê ve hetanî niha derheq daxwazên Kurdan her wisan berdewam e. Niha jî pênasa Kurdan li Îranê tête haşa kirin, neteweya Kurd di bin tepeseriya hove rejîmê de ye. Girtina serberdayî, dizî, winda kirin, îdamên bê mehkeme, li dar ve kirin li cihên bikom, îşkence kirin bi terzên sîstematîk li zîndanan de û kevir baran kirin bûye jiyana rojane a xelkê.

**Gelî hevalan!**

Bêşik ev pirsyar bo ve jî hatiye pêş ku: Erê gelo tu bêjî Kurd daxwazkarê çi tiştekî li Îranê bin, ku rejîma Îranê bi wî awayî rabûn û rûniştinê tevî wan dike? Di vê bersivê de gereke bêjim ku berevajî hemû wan gunehên ku ji aliyê hukûmeta navendî ve Kurd pê têne tepeser kirin, tevgera Kurd li Îranê, tevgerekî cudaxwaz nine. Kurdên Îranê dehan sal e di çarçoveya wî welatî û di pêxema gihîştin bi demokrasiyê û bi fermî nas kirina mafên xwe di forma Otunomiya herêmî de xebatê dikin. Dirûşma PDK Îranê ku ji sala 1945'ê ve rêberê bizava neteweyiye Kurd li Îranê de ye, pêk hatiye ji: ***Demokrasî bo Îranê û Otunomî bo Kurdistan'ê***. Her wek xuya ye siloganên partiya me ji tuxîbên Îranê derbaz nabin, bi baldan bi ceribandina dîrok û zirûfa Jeopolotîka herêmê em bawer in dirûşmên me, dirûşmên berheq in û daxwaza Otunomiyê cuda ji rewa bûna vê, daxwazekê destpêkî ye. Li vê xwastikê de em dixwazin çanda xwe biparêz in, em dixwazin ku zimanê Kurdî li Kurdistanê bi zimanê fermî bihê nas kirin, her çend zimanê Farsî wek zimanê hevpişk li seranserê Îranê berdewam rola xwe dilîz e. Zarokên Kurd, diviya mafê vê hindê hebin ku bi zimanê dayîkê dersê bixwînin, hêza siyasî diviya bihête parastin, kar û barên hundire Kurdistanê gereke bi destê nonerên xelkê Kurd û ji rêya hilbijartinekî azad û demokratîk ve bihête diyarî kirin û bimeşe. Armanca sereke ya wan daxwaziyane eva hane ku gelê Kurd ji vê hindê zêdetir di axa bab û kalên xwe de seh bi biyanî bûna xwe nekin û wekî hevwelatiyên pile yek bihê berçav girtin, ne wek hevwelatiyekî pile du, heta pile sê jî.

Li pêwendî tevî doza Kurdan li Îranê de, hin alî behsa Fedelraiyê dikin û bi baldan bi pir neteweyî bûna vî welatî, sîstema Federaliyê wek rêveçûnek bo çareseriya doza neteweyî di Îranê de pêşniyaz dikin, bersiva me derheq vê eyan e: Li ber vê hindê ku em jî welatê Îranê bi welatekî pir Neteweyî dizanin û me bawerî bi mafê neteweyan heye, dibêjin ku bi baldan bi rastiya han ku neteweya Fars li Îranê tenê 40% heta 45% ji xulyaqeta Îranê pêk tînin, sîstema Federalî li Îranê sîstemekî berheq û bersivdar e. Lê heke hetanî niha me tenê daxwaza Otunomiyê bo xelkê Kurdistanê kiriye, bi egera vê çendê bûye ku me nexwastiye bibine berdevkê gelên dinê û bedela wan bibne biryarder. Bi kurtî heke Federalîzm li pêşerojê de bi awayekî micit bihête holê, Partiya me bi hemû hêz û şiyana xwe ve vê piştgiriyê biket. Çimkî Partiya me 25 salan berî niha li peyamekê de bo Xumeynî sîstema Federaliyê wek sîstema herî jêhat bo îdare kirina Îranê aniye ber basê û pêşniyaz kiriye.

**Hevalên rêzdar!**

Di pêwendî tevî çareseriya doza Kurdan li Îranê, helwesta Partiya me her tim helwestekî aştîxwazane û bi dûr ji tund û tîjiyê bûye. Me her tim gotiye ku pirsgirêka Kurdan li Îranê bi rêya



Xusro Ebdulahî

leşkerî nahête çareser kirin, ev doze diviya bi awayekî demokratîk û aştiyane bihête çareser kirin. Mixabin tevahiya cehdên aştîxwazane ye me li vê derheqê de bê encam mane. Çimkî hukûmeta navedî çi berî şoreşê û çi piştî şoreşê tenê ji rêya hêza leşkerî û tepeserî û terorê ve bersiva daxwazên me daye. Di bersiva wan serkûtên ne mirovane de bûye ku hinek caran Kurd bo berevanî kirin ji man û hebûna xwe hatiye neçar kirin ku dest bavêje çekê û bi awayekî leşkerî li hemberî vê rejîmê de bisekine.

Bo arxayîn bûn ji helwestên aştîxwazane ên Partiya me, hewce ye bi bîr bînim ku Dr. Qasimlo rêberê jêhate me li ser kursiyê diyalog û gotûbêjê bi destê hin kesan hate şehîd kirin ku ji aliyê rejîma Îranê ve bo ***Aştî û çareseriya pirsgirêka Kurd*** ji rêya aştiyê ve hatibûne şandin.

Serbarê vê hindê jî me her gav bawerî bi pirensîpên xwe hene û li ser vê baweriyê ne ku doza Kurd diviya ji rêya aştî û diyalogê ve bihête çareser kirin. Hekî rojek îmkana gotûbêj û rûniştinekî micit bi pişkdarî kirina zêrevanên navneteweyî bo me bihête holê, bê şik Partiya me dê pêşwaziyê ji gotûbêjekî wisan biket. Lê vê hindê jî pêşkêşî xizmeta ve dikim ku ceribînên me dibêjine me ku nabe we tu bawerî û hitbarek bi vê rejîmê hebe, çimkî rejîmek ku bo çareseriya doza neteweyî û heta navneteweyî jî bi zimanê tund û tîjî û hêza leşkerî û kiryarên terorîstî diaxive, ne tenê cihê bawer pê kirinê nine, belkî bi awayekî zatî şiyana çareser kirina aştîxwazane a dozên xwe jî çi nine.

**Hevalên rêzdar!**

Li dawiyê de ez dixwazim axaftinên xwe bi çend peyvên geşbînane bi dawî bînim û ev jî eva ku îro xelkê cîhanê dibînin ku tevgerekî bihêze azadîxwazane li holê de ye, tevgerek ku çi baweriyek bi soz û dirûşmên Xatemî çi ninin e û daxwazkarê guhartinên bingehîn û kûr li Îranê de ye.

Ku wisan e me Kurdan mafê vê hindê heye ku di xebat kirin bo bi dest ve anîna azadî û demokrasiyê de niha pêde seh bi tenêtiya xwe nekin.

Bi hêviya serketina xelkê Îranê

Zor sipas bo rêz û baldana ve

# Nasyonalîzm û Rojhilatê Kurdistanê

✍:Rambod Lutfîpûr

Her çend ku hin hizr û baweriyên siyasî û civakî nasyonalîzmê, mîna diyardeyeke kevn di warê hizr û ramanê, didin nas kirin, lê bi giştî û bi metodekî zanistî em dikarin bêjin nasyonalîzm diyardeyekî pêşketî û modern e ku piştî Şoreşa Firansayê bi xasmanî di dawiya sed sala 18'an û destpêka sed sala 19'an de rû li geş û xurt bûnê kiriye.

Di pênaseya nasyonalîzm (netewey)ê de bawer û ramanên cur bi cur hene û ji hin aliyan ve tê mêze kirin. Bo mînak hinek hizrvan û zana hebûna neteweyê bi diyardeyekî dîrokî dizan in û fakter û xwestikên bi hevrebûn û zanebûna kesayetiyan bi xala bingehîne neteweyê dihesibîn in, hin ji zanayên wî warî mîna zaf hizirvanên Birîtanyayî û Firansayî, hebûna dewletê bo pêk anîna netewe bi faktereki sereke dizanin û neteweya bê dewlet jî bi fermî nas nakin.

Lê em bi kurtî dikarin bêjin: Netewe ev koma xelkê ye ku xwediyê çand û dîrok û aboriya hevpar bin û li ser axeke diyarî kiryî de jiyanê bikin û ev xalên hevpar bi hevre girê dabin û bi daxwaz û xwestika bi hevre jiyan û li pey hikmê xwe rêve birinê li ser erdê xwe bin.

Li gor vê pênasa ku bo Neteweyê hate kirin, em dikarin bêjin nasyonalîzm bizavekî hizrî, civakî û siyasî ye, nasyonalîzm dikare berhema geş bûna jiyana madî û rohiya neteweyê be û ji bo gur û xurt kirina vê dozê jî liv û bizavê biket, yan jî dikare berhema bizavekî azadîxwazî ji bo serbestî ji destê dijminan be.

Nasyonalîzm mîna bizavekî hizrî di nava rewşenbîrên her neteweyekê de çê dibe û piştî belav bûna vê bi astê civakî de mîna bizaveke civakî rê bo çê bûna bizavên siyasî vediket û pêngavên bi kiryar û piragmatîk bo gihîştin bi armancên xwe davêjît.

Helbet ev pênasa ku derheq bi nasyonalîzmê hate kirin zêdetir terzek ji vê pênasê ye ku nasyonalîzma rizgarîxwazî a bindest li xwe digire, nexa nasyonalîzma mezinxwez û super hêz ku em dikarin mîna nasyonalîzmekî dewletî nav bibin, pişkekî din ji nasyonalîzmê li xwe digire ku bingeha vê li ser hêza deshilat û dewletê ava bûye. Li welatên cîhana sêyem de jî dikarin bêjin ku berhem û nobereya kolonyalîzm a serdemî ye ku di vê mijarê de merema basa me nine.

Bi kurtî em dikarin bêjin ku nasyonalîzma neteweyên bindeste wan welatane renegdaneweya nasyonalîzma neteweyên xwedî hêz û deshilatdar bûye. Piştî wê ku neteweya deshilatdar bi haydana kolonyalîzmê ji bo pêk anîna neteweyeke hevgirtî li ser bingeha kulturiya xwe dest bi asimîle kirin û ji nav birina neteweyên bindest kir, rewşenbîrên neteweyên bindest ku hetanî qaseke tevî Elf û Bê a nasyonalîzm û mafên neteweyî nasyar bibûn, bizivîn û bingeha bizava rizgarîxwaziya xwe bi kakila neteweyî ve di nav welatan de pêk anîn. Ku wisan e lêreda bo me der dikeve ku nasyonalîzma van netewane jî li ser bingeha geş kirina xwezayî û dîroka wan pêk ne hatiye, belkî nasyonalîzmekî ne gihîştiye û reng vedana nasyonalîzmekî negihîştî a dinê ye.

Encama vê têkiliya di navbera neteweyên deshilatdar û bindeste wan welatan de çê bûna kolonyalîzmeke kolonyalkirî bû û neteweyên deshilatdar her çend hatibûne kolonyal kirin lê belê wan jî bi metodekî qahîm û hovane û bi awayekî Eşîretî, neteweyên di bin destên xwe da kolonyal dikirin, heya radeya ku ji sînorên Kolonyalêzma Ewropayî jî derbas bibûn û heya erdê neteweyên bindestê xwe jî bi erdê xwe dizanîn, lewma mafê hemû cure tund û tîjî û tepeseriyekî li hemberî bizava rizgarîxwazî a van netewane bi xwe didan.

## Nasyonalîzm li Kurdistanê de

Eva ku çawan seha neteweyî û nasyonalîzmê di nava Kurdan de pêk hatiye û reh û rîşalên xwe raçandine, her wekî ku berî niha me bas kir pitir rengvedana Nasyonalîzm û kedxwariya neteweyên deshilatdar bûye, neteweya Kurd ne berhem û dahata geş û xurt kirina Sermayedariyê ye û ne jî berhemê geş kirina warên rohî û rewaniye netewî ye, belkî berhemê bizavekî rizgarîxwazî ye ku dijberî nasyonalîzma şovînîstiye neteweyên deshilatdar da serhildaye.

Dema ku nasyonalîstan tevgera xwe dijberî Kolonyalîzma Firanse û Birîtanyayê dest pê kirin, xebitîn ku neteweyeke yek dest di vê para Osmaniyan de bi xasmaniyên çandiya neteweya deshilatdar ku Tirk in dest ve bînin. Ev para Kurdan jî ku di bin deshilata Osmaniyan de bûn piştî parve kirina vê Împiratoriyê bi çend dewletên cuda cuda, berevajî neteweyên dinê, mîna neteweyekî taybetî nehate hesibandin û bi mafê neteweyî ên xwe ku pêk anîna dewletekî Kurdî bû negihîştin û li ser 3 dewletên: Tirkiye, Îraq û Sûriye de hatine parve kirin. Tirkan ku di pêşiya pirojeya pêk anîna Dewleta Neteweyî a Tirik de Kurd wekî berbest û asteng didîtin, lewma dest bi asîmîlasyon kirina kultur û webirandina tuxmiye vî neteweyî kirin. Di vê qonaxê de bû ku teesiba giştî a Kurdan ku deskevta pêkhata eşîretiya civaka wan bû, guherîn bi ser de hat û ber bi nasyonalîzmekê çû ku kakileke rizgarîxwaziyê hebû, her çend ku pêwendiyên berhem anînê hingê jî li ser bingeha Fiodalîzmê bû, lê belê tund û tîj û kedxwariya neteweya deshilatdar ku hebûn û kesayetiya Kurdan înkar dikir û bi hemû awayekê dest bi helandin û webirandina wî neteweyî kiribû, bû sebebê şiyar bûn û vejandina seh û hesta neteweyî a Kurdî, û bûye hêvênê bizaveke nasyonalîstî a rizgarîxwazî di Kurdistanê de.

Bi wî awayî Tirkan dest bi sepandina ziman û çand û wêjeya neteweya Tirik û asîmîlasiyona neteweya Kurd kirin, dest bi kuştin û mişextî kirina Kurd û Ermeniyan û cîgir kirina Tirkan li cihê wan de kirin.

Di vê para Kurdistanê ku ketibû nava sînorên Îraqê, alozî her wek caran hebû, lê tenê bi cudahîyekê ve. Ew jî eva ye ku dewleta Îraqê bi sebeba biryara Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di sala 1924'ê de bi serwekî nedikarî ziman û çanda xwe zal biket, lê belê ewê jî li hin cihên Kurdistanê mîna Kerkûk û Mûsil û . . . dest avête asîmîlasiyon kirina çanda Kurdan û webirandina tuxmê Kurdan û Ereb anîn di herêmên Kurdakincî de cîgir kirin.

## Nasyonalîzm di Îranê de

Nasyonalîzm di Îranê de mîna welatên dinêye cîhana sêyem berhema siyaseta Kolonyalîzmê bi taybet Birîtanyayê bû, piştî serekftina Şoreşa Octobere Rûsiyê û pêk hatina deshilata Komonîstî di wî welatî de, Îranê girîngiyeke taybetî bo Birîtanyayê peyda kiribû, lewma ji bona pêşgirî kirin ji bîr û ramanên Marksîstî bo hundirê Îranê, hin ji kesayetiyên siyasî û leşkeriye Îranê paldan da ku li ser welatê Qacar dewletekî navendgera ya nasyonalîstî bi kakila çanda Farisan ve di bin navê Îranê de pêk bînin.

Evê nasyonalîzmê her li destpêkê de dixwest ku di welatê pirneteweye Qacar de neteweyekî hevgirtiye Îranê bi xasmaniyên neteweya Fars pêk bîne, diyare Rizaxan û piştî hingê jî Mihemed Riza Şa gelek hewil dan ku bi mifah wergirtin ji hêza leşkerî û deshilata dewletî neteweyên dine Îranê di nav neteweya Fars de bihelîne û bi vê meremê jî Kolonyalîzma ku pêk anînê bingehiye wê dewleta nasyonalîstî bû, mezintirîn parêzer û piştgirê vê dewletê bû. Bo mînak li çaxê ava bûna Komara Kurdistan û Azerbaycanê li sala 1945 – 1946'an arîkariya Birîtanya û Emerîka bo parastina Îranê û hiloşandina wan Komarane gelek berçav û eşkere bû. Serbarê wan hemû cehd û xwe westandinê dewleta nasyonalîste Fars nekarî neteweyên dinê bihelînît û neteweyekî yekgirtî pêk bîne. Hêşta neteweyên bindest di Îranê de xasmaniyên çandiye xwe parstine û daxwaza mafên neteweyiye xwe dikin.

## Nasyonalîzm di Kurdistana Îranê de

Nasyonalîzma Kurdî di Îranê de, berhema geşekirina Xuristî û dîrokiya civaka xwe nebû, belkî para zaf, bandora nasyonalîzma deshilatdare Faris bû mîna bizavekî rizgarîxwaz dijberî siyaseta helandin û asîmîle kirina Kurdan di Îranê de pêk hatibû (Tevgera Simayîl Axayê Şikak) hetanî qasekê li bandor û kartêkirina pêvajoya zêde kirina Nasyonalîzm û Kurdayetiya pişkên dinêye Kurdistanê mifah wergirt. Her çend mîna nasyonalîzma deshilatdar ya Faris, nasyonalîzma bin deste Kurdan jî di qonaxekî wekî serdemê Komara Kurdistanê bandora fakterên biyanî (Yekîtiya Soviyetistana berê) li ser bû, lê bi giştî em dikarin bêjin ev nasyonalîzm bi merema pêk anîna bizavekî rizgarîxwazî û heta qasekê jî bi haydana nasyonalîstên parên dinêye Kurdistanê hatibû holê (Komara Kurdistanê).

Piştî hiloşîna Komara Kurdistanê ku nimûna berbiçav ya Nasyonalîzma Kurd di Îranê de bû, dîsan jî Kurdayetî yan Nasyonalîzma Kurdî mîna bizavekî azadîxwaz û dijî Kolonyalîzmê her dem di zêde kirin û berfireh bûnê de bû. Bi terzekê ku piştî serhildana gelên Îranê di sala 1979'an de hizra Nasyonalîzmê di Bakûr û navenda Kurdistana Îranê derbas bû û xwe gihande Başûrê Kurdistana Îranê jî.

→

# Bizava xwendekariya Îranê û doza gel

✍:Hêmin.Seyidî

Em di rewşekê de bîr anîna 50'mîn salvegera 16'ê Sermawez'ê rêz digrin ku Bizava Xwendekariya Îranê nêzî rojên armanc û gelî bûna xwe bûye. Wê bizavê ji bilî du demên, destpêka serhildana sala 1357 (1979), (hetanî pêş şoreşa çandî) û dema bi deshilat gihîştina Mihemed Xatemiyê Serok Komar, her dem naverokek radîkal û armancxwazane hebûye û çi demekê tevlî deshilat û hêzên dewletiye hev deme xwe tebayî ne bûye. Ji ber ku li hemû wan salan de (li her 2 hukûmetên Paşayetî û Îsalmî), vê bizavê sîstemên deshilatdare welêt bi demokratîk ne nedîtine heta ku bikare ji rêya bihevre bûn û dan û standin tevî xwedî hêz û deshilatdarên siyasetên xwe bimeşînin.

Eyane ku di çarçoveya hukûmetên dîktator û totalîter de, fersend û derfetek ji bo xebat û têkoşîna riform û guhertin û saziyên sivîl tu neye. Lê bizavên mezine xwendekariyê li gelek deverên cîhanê, çi bi awayê sazîn tevî deshilatên demokratîk û çi bi awayê dijebrî kirin tevî sîstemên Totalîter, deskevtên pir mezin û hêja hebûne. Ev meş û herekete li Îranê, tevî dûrketin ji hêzên deshilatdar, bi sedema berbend kirina bîr û nêrînên civakê, weke bizaveke azadîxwaziyê dikare pîvanek girîng ji bo nirxandina xebata xwendekarî be û dikare rewşa civaka niho ya Îranê û çawaniya daxwazên gel bi me bide kifş û eyan kirin. Ji aliyekî din em dikarin warên cur bi cure pêşde birina civakê di nava bizava xwendekarî de peyda bikin. Di pêvajoyekê de ku li deshilatên ne demokratîk de îmkan u derfet ji bo pêk anîna yekîtî û saziyên gelî û sivîl û senedîkayî tu neye û azadiya peyvîn û nêrînê û azadiya çalakiya Partiyan û . . . heta bi awayekî kartonî jî nahê dîtin. Bizava Xwendekarî ji gor hereketên dine civakî – heta bi awayekî xwezayî û ne rêxistinkirî – ser û bertir ji bizavên dine civakê bi neçarî rolê pêşeng bûn û ramanên azad bi stûyê xwe girtiye, Yanî di rewşekê de ku pêvajoya pêşketina civakê di warên siyasî, abûrî û çandî û . . . berbend bûye.

Hetanî demekê ku zanîngeh bixebitin, ev refa yekeme vê li pêşkekeftina civakê de rolê eslî û bingehîn bilîz in. Ku wisan e bizava Xwendekariya Îranê û armancên vê, him zimanê daxwaz û xwestikên gel in û him fermanderiya bi dest xistina wan armancan – heta dema pêk hatina rewşa demokratîk – bi stûyê xwe girtiye. Bi wî awayî emê nirxandinekê ji vê bizavê û rêyên pêşerûye vê bikin ku li rastiyê de her ev daxwazin ku gelên Îranê hene:

Li destpêka 16'ê Sermawez'a îsal de bizava Xwendekarî bi giştî û tayê nivî qanûniye vê "Defteri Tehkîm Wehdet" di kiryarekî şiyar û cesûrane de biraya xwe derheq hilbijartina meclîsa 7'mîn de ragehand, ku tê de pişkdarî kirin di hilbijartina han de hatiye "tehrîm" kirin. Eva bi xwe pîvaneke ji bo nirxandina bîr û nêrînên gel û rastiya wê jî, li çend mehên pêşîn de û bi pişkdarî ne kirina xelkê di hilbijartinê de diyar dibe.

Rayedarên Komara Isalmî ku ji rolê girînge xwendekaran û beşdarî kirina gel li hilbijartinên 4 sal berî niha agehdar in, seba rewşa han bi tundî perîşan û matmayî bûye. Li gor rewşa han dewletê



Hinek ji xwendekarên Zanîngeha Urmiyê li halê Rojî girtina Siyasî

bo bêdeng kirina rê û resma bîr anîna 16'ê Sermaweza îsal xwe ji çi cehd û kiryarekê ne parast ku mînakek biçûk ji nefermaniya medenî bû. Me dît ku gel ji vê rêyê bo nîşaneya neyarî û nerazî bûna xwe li dîktatoriya deshilatdar mifah wergirt in û li pêşerojê de jî vê xurttir bikin.

Xwendekarên Îranê hewl û cehdên wan di pêvajoya birine sere qasê zanîn û agehiyên siyasî, civakî û hin tiştên din – hevdem tevî pêşketinên zanistî – bo bi dest xistina dezgehên azade nûçe û zanyariyan pitir hewlê didin, ku dikaribe pêngavekî gelek girîng di pêvajoya siyasiye welat be. Mifah wergirtina xwendekaran ji her fersend û derfetekê bi beyan kirina dîtin û nêrînên xwe derheq rewşa aloz û şepirzeye dîktatoriyê li Îranê, rijîma Komara Islamî perîşan kiriye.

Ev nigeraniye li gotin û axaftinên wan li rê û resm, hevdîtin û boneyên din . . . bi eşkere xuya dike, û her dem ji mifah wergirtina çelenganeya xwendekaran ji tirîbûn û derfetên cur bi cur ditirs e. Ev terze nerazî bûne niho bi awayekî berfireh di civîn û komikên xelkê de tên dîtin. Gel ne tenê di civînên biçûk, xasmanî û ne fermî, belkî di kolanan, xwendingeh û îdareyan û . . . de jî, bi eşkere nêrînên xwe tînin rojevê û hizr û ramanên xwe bi hevre radigehînin. Bi giştî her derfetek dikare yekîtî û hevgirtinê bo dijberî kirin tevî rijîmê pêk bîne. Niha mifah wergirtin ji Întenêt bo çê kirina têkiliyên bi hevre, nemaze tevî opozîsyona derveyî welat, tenê taybet bi xwendekaran nine, serbarî hemû sansor û fîlter (parzînk) danînê, rejîmê nekariye pêywendiyên nivîskî û bêjeyî bêxe bin kar tê kirina xwe.

Di warê çandî de, gel jî mîna xwendekarên welat dijberiya tewaw li gel siyasetên bi nav çandiye rejîmê girtine berahiya xwe. Hewl û bizavên 25 salên derbazbûyiye rejîmê ji bo cê pê wekirin di nava bihayên çandî de, her wekî di nava komeleyên rewşenbîrî û zanistî de li mêj ve ye şikestiye û rengdanewa serneketina wan siyasetane niha di nava gel de bi başî tê xuya kirin. Gel û xwendekar ev curê ku xwe dizanin pîvan û hêmayên çandî diyarî dikin û peywendiyên civakî ji xwe re didanin. Îro cîhan mîna gundek biçûk lêhatiye – aliyê kêm di warê çandî de – gelê Îranê jî bi xwe xistiye û xwendekaran di vê pêvajoya nû de roleke eslî û bingehîn hene.

Mînakek din ku xelkî bûna bizava Xwendekarî bo me diselimîn e, rewşa serokatiya bizavê ye. Îro serokatiya bizava xwendekarî li gor cih û kêmaniyê li 3 rewşên cur bi cur de ye: Parek ji wan di nava girtîgehên rijîmê de ne, pişkek din li derveyî welat xebat û têkoşînê dikin û evên din niha jî bi awayê fîzîkî di nav civak û bizavê de ne. Ev parve kirine bo serokatiya bizava azadîxwaziya seranseriye Îranê jî durist e.

Serokatiya bizava Xwendekarî li girtîgehê, para sembolîk û cihê şanaziya xebata xwendekarên Îranê ye ku her dem mînaka berxwedanî û domandina wê xebatê ne. Belkî niho wan rolek wisan eslî li meşandina armanc û siyasetên bizava xwendekarî çi nebin, lê hêza eslî û pêşengên vê liv û hereketê ne.

Serokatiya bizava Xwendekarî li derveyî welêt – ku bi zor neçar dûr ketin li Îranê bûne – bi sedema mifah wergirtin ji teknolojiya nûjen ya ragehandinê, karîne têkiliyên xwe bi hundirê welat re biparêzin û tevî vê di nava opozîsyonê û heta komeleyên navneteweyî de jî rolê berdevkê bizavê bilîzin. Erk û wezîfeya wan e ku bo gihandina dengê hevşopên xwe bo gelên cîhanê ji hemû derfetan mifahê werbigrin û di hemû warî de bo piştgirî kirina menewî û siyasî bo para hundire welat bixebitin.

Lê para serokatiyê li navxweye welat, ku di rewşek zor dijwar û cihê tirs û gumanê de dijîn, rêveberiya hemû bizavê bi stûyê wan e. Li dan berhev tevî rêberên hepsî û derweyî welat, biryarderê dawîn in. Têkiliyên wan bi gel û rêberên bizava azadîxwaziya seranserî li Îranê, zor girîng e. Pêk anîna hevdengiyê li xwepêşandanên giştî de, bi rêxistina terz û metodên dijberiya medenî, gihandina zûye pêşketinên siyasî û çandî bo nav dilê civakê û xulqandin û biryar girtina demî li qewmîna bûyer û derfetên roj, hemû parek in ji erk û wezîfeyên bizava Xwendekarî û serokên vê li hundirê welat de ne.

Li dawiyê, em hêvî dikin ku bi yekîtî û hevgirtina liv û meş û hereketên giştî û xelkî û zêde bûna xelkê di nava refên xwendekaran, ev têkilî kirine encamek baş di pêvajoya qezenc û berjewendiyên gel û gihîştin bi daxwazên wan hebin.

**Doma Nasyonalîzm û Rojhilatê Kurdistanê**

Hebûna Partiya Demokrata Kurdistan a Îranê ku nonerê rastîne bizava Millî – Demokratîke neteweya Kurd di Kurdistana Îranê de ye û ji dema Komara Kurdistanê ve maye, bandorekî zor li ser xurt kirina Nasyonalîzma pêşkeftî û demokrasîxwaz di vê pişka kurdistanê de hebûye û bi parastina armancên sereke û berevanî ji mafê dîyarî kirina çarenivîs û qederê ji bo netewa Kurd, bingeha nasyonalîzmê di nava civaka Kurdistana Îranê de parastiye û berfireh kiriye.

Di encamê de hewceye bê gotin ku Nasyonalîzma Kurdî li Kurdistana Îranê û bi giştî di parên dinêye Kurdistanê da jî di warê hizrî ve gihîştiye qonaxa zane bûna neteweyî, ji aliyê civakî ve jî, bi sebeba geş bûna borjwaziya bajêrî ve gihîştiye qonaxa rewşenbîrî û demokrasîxwaziyê û ji aliyê rizgarîxwaziyê ve jî gihîştiye qonaxa xebata piragmatîk û qeder saz.

*<u>Çavkanî:</u>*

*1.Împiratoriya Lim, Refîq sabîr*

*2.Kurd û Şoreş û derfetên dîrokî. Husên Mihemed Ezîz*

*3.Du lêkolînên siyasî. Hilmî Elî Şerîf*

# Daxuyanî

## Derheq birêveçûna Pilînoma Komîteya Navendî ya PDK Îranê

Komîteya Navendî a PDK Îranê, hilbijartiya Kongireya 12'ê ya Partiyê, demjimêr 9'ê sibêdehiya roja pêncşemî, 20'ê Sermaveza sala 1382'ye Rojî hemberî 11.12.2003'ye Zayînî, 13'mîn pilînoma xwe bi pişkdariya piraniya endam û cîgir û Şêwirên Komîteya Navendî li dar xist û piştî 12 demjimêran karê berdewam, dawî bi karên xwe anî.

13'mîn Pilînoma Komîteya Navendî bi ragehandina deqîqeyek bêdengî û li ser pê sekinîn bo hurmet girtin ji canê paqije her du şehîdên xebatkare PDK Îranê, Şehîd Ramîn Şerîfî û Celîl Zêweyî ku vê dawiyê, li girtîgehên rejîma Komara Islamî de hatine li dar ve kirin û her wisan bo rûmet girtin ji bîr anîna hemû şehîdên rêya azadiyê, dest bi karê xwe kir. Piştî pêşniyaz û pejirandina bernama karê Pilînomê, li destpêkê de hevalê birêz Elî Mêhrperwer Endamê Deftera Siyasî ji aliyê Deftera Siyasî a Partiyê ve, baseke giştî li ser rewşa Îran û hilbijartinên gera 7'mîn ya Meclisa Şêwra Islamî a Îranê pêşkêşî pişkdarên Pilînomê kir. Ev bas û pêşniyaz ji aliyê endamên rêveberiya Partiyê (beşdarên Pilînomê) bi awayekî hûr û berfireh ketin ber bas û gengeşe kirinê û hilbijartina 7'mîn gera Meclisa Şêwra Islamî bi berçav girtina tev aliyên pêwendîdar, we biryara ***pişkdarî ne kirin*** di vê hilbijartinê da hate girtin.

Di pişkeke dine karê Pilînomê de biryar û pêşniyazên Komîteya amadekare Kongra 13'an ya Partiyê li pêwendî tevî parek ji kar û barên vê Kongirê, ku pêş de ji aliyê Deftera Siyasî ve hatibû pejirandin, kete ber destê pişkdarên pilînomê û piştî basekî dûr û dirêj ji aliyê beşdarên pilînomê ve hate pejirandin.

Li dawiya karê Pilînomê de komek bas û mijarên cur bi cur û pêwendîdar bi kar û barên Partiyê ji aliyê Deftera Siyasî ve kete ber bas û gengeşe kirinê. Pişkdarên Pilînomê di vê para karê 13'mîn Pilînoma Komîteya Navendî de jî zor bi çelengî pişkdarî wan basane bûn û li pêwendî tevî wan pirsane de bîr û dîtinên xwe anîn ziman. Pilînom piştî wan behs û nirxandinan, raspardeyên xwe dane Deftera Siyasî, hetanî di pêwendî tevî her yek ji wan pirsane pêngavên hewce bavêje.

Pilînomê demijimêr 9'ê piştî nîvroya roja pêncşemiyê dawî bi karên xwe anî.

**Deftera Siaysî a PDK Îranê**
**1382.09.21'ye Rojî**
**2003.12.12'ye Zayînî**

# Daxuyanî

## Di pêwendî tevî li dar ve kirina heval Ramîn Şerîfî de

Bi xem û kovanekî zor ve radigehînin ku kadroyê kêrhatî û xebatkare Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, Ramîn Şerîfî ku 5 mehan berî niha ji aliyê hêzên tepeserker yên rijîma Komara Islamî a Îranê ve li bajarê Seqizê, hatibû girtin û bo girtîgehê hatibû şandin, roja şemiyê 15'ê Sermaweza sala 1382'e Rojî (06.12.2003'e Zayînî), ji aliyê rijîma dijî mirovî a Komara Islamî ve hate îdam kirin.

Şehîd Ramîn kurê Husên, 27 salî û xelkê Dîwandere û akinciyê bajarê Seqizê bû. Xwendina xwe li bajarê Seqizê domand û ji bo xebat dijberî dîktatorî û kevneparêziyê û bi merema gihîştin bi azadî û mafê neteweyiye Kurd, sala 1372' Rojî, tevlî refên xebatkarên PDK Îranê bû û di heyamê nêzî bi 10 salan xebat û têkoşîn di nava refên Partiyê de, gelek erk û berpirsyaretiyên cur bi cur bi stûyê xwe girtin û bi, pakî û jêhatî rêve birin.

Piştî girtin û xistine nava girtîgehê, serbarê îşkence û azar dana cendekî û rohî, tu car teslîmî daxwazên rijîmê nebû û her wek berê bi armancên gel û rêbaza Partiya xweştiviye xwe emegdar ma.

Ji dest çûna vî xebatkarê rêbaza Demokrat, bêşik ji bo gelê Kurd û PDK Îranê xesar û derbekî giran e û kul û elemekî zaf xiste nava dilê hemû azadîxwazan bi giştî û bi taybetî xebatkarên Demokrat.

Partiya Demokrat a Kurdistan Îranê tevî şermezar kirina vê cinayeta Komara Islamî a Îranê, behî û serexweşiyê ji malbata bi rûmete vî şehîdî û hemû heval û hevçeperên vî diket û hemû aliyekê piştrast û xatircem dike ku li dar ve kirina vî hevalê xebatkar, ne her tenê xelkê Kurdistanê çavtirs in naket û ji îman û baweriya xebatkarên Demokrat bo domandina rêya serketin û xebat û berxwedaniyê sist naket, belkî ewan ji bo vê dozê gur û xurttir diket.

Li vê demê û di vê derheqê de, her weke berê me hebûna tirs û xofa li dar ve kirinê li ser canê vî xebatkarê azadîxwaz bi haya kom û komel û rêxistinên mirovhez ragihandibû, dîsan jî vê daxwazê ducar dikin ku bi givaş xistin bi ser Komara Islamî a Îranê, vê rejîma serberdayî û dijî mirovî ji kuştina azadîxwaz û xebatkarên Demokrat vezivirînin û rê nedin çi din Komara Islamî, wiha bi hêsanî canê azadîxwaz û xurtên dilsoje gelê Kurd jê bistîne.

Hezar silav ji canê paqije Şehîd Ramîn Şerîfî û hemû Şehîdên rêya azadiyê.

Mirin û neman bo Komara Kurdkuj û dijî azadî ye Komara Islamî a Îranê

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**16.09.1382'ye Rojî**
**06.12.2003'ye Zayînî**

# Daxuyanî

## Komara Islamî a Îranê Celîl Zêweyî îdam kir

Bi kul û keserkî giran ve radigihînin ku xebatkar Celîl Zêweyî, endam û hevalê çelenge Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ku di sala 1373'e Rojî di pêvajoya têkoşîna partiyê de li nêzîk gundê "Nîvkurdar" bi birîndarî ketibû destê hêzên rejîmê, roja pêncşemî 13'ê Sermaweza sala 1382'ye Rojî hemberî (04.12.2003'ye Zayînî), li bajarê Mehabadê bi destê mirovkujên Komara Islamî hate dar ve kirin.

Şehîd Celîl kurê Mihemed xelkê gundê Mirane ser bi herêma Gewirkayetî a Rebet'ê û akinciyê bajarê Serdeşt'ê bû. Li destpêka girtina wî ji aliyê hêzên rejîmê ve bi tundî ketibû bin givaş û îşkence kirinê, tûşî xwînrêjiyekî tund jî hatibû, serbarê vê çendê jî qet bawerî û îman û netirsiya vî ber bi lawaziyê neçû û her wisan rijd û qahîm li hemberî kevneparêzî û dîktatoriya deshilatdaran de sekinî û bi armancên gel û xebata rewa û berheqe gelê Kurd û rêbaza pîroze PDK Îranê, bi emegdar ma û aqibet jî canê xwe di pêxema wan de gorî kir.

Termê Şehîd Celîl li bajarê Serdeşt'ê hate weşartin û dezgehên tepeserkare Komara Islamî izna birêve birina rê û resma serexweşiya eşkere bi malbata rêzdare wî nedan. Bi vî halî jî xelkek zaf ji bajarê Serdeşt'ê çûne mala vî şehîdî û rê û resma behî û serexweşiyê bi cih anîn.

Bêşik ji destdana xebatkarê Kurd Celîl Zêweyî bo hemû xelkê Kurdistanê bi giştî û ji bo xurtên Demokrat bi taybetî, xisar û derbekî mezin bû û xem û nerehetiyekî zaf xiste nava dilê hemû azadîxwazan û xelkê bi şerefe Kurdistanê. Lê şik û guman tê de nine ku li dar ve kirina vî xebatkarî ne tenê xelkê Kurdistanê natirsîne û ji xebat û berxwedaniyê tevî dîktatorî û kevneparêziyê nazivirîne, belkî ewan ji bo dom kirina rêya serkeftin û gihîştin bi maf û azadiyê gur û xurttir diket.

Bi sedema Şehîd bûna wî xurtê xebatkar, em serxweşiyê ji malbat, xizm û kes û karên malbata birêz Celîl Zêweyî û hevçeperên vî dikin û hêvîdar in bi domandina rêya xebat û berxwedanî û bi dest ve anîna hêvî û armancên wî, riha vî şehîdî û hemû şehîdên Kurdistanê şad û ji xwe razî bikin.

Her di vê demê de jî em vê kiryara hov û cinayetkarane ya Komara Islamî bi tundî şermezar dikin û daxwazê ji Kom û Komele û Rêxistinên Mirov hez dikin ku tevî şermezar kirina vê cinayeta Komara Islamî, vê rejîmê bi merema dawî anîn bi pirosesa li dar ve kirina xebatkar û azadîxwazan bixin bin givaşê.

Riha vî şehîdê nû û hemû Şehîdên rêya azadiyê şad û rêya gihîştin bi armancên wan pir rêving be.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**16.09.1382'ye Rojî**
**07.12.2003'ye Zayînî**

# Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDK Îranê derheq hilbijartina gera 7'mîn a Meclîsa Şêwra Islamî

Hevwelatiyên birêz!

Xelkê azadîxwaze Kurdistanê!

Li gor ragehandina Wezareta Hundir ya Komara Islamî a Îranê, qirar e li destpêka meha Reşeme ya 1382'e Rojî de, hilbijartina gera 7'ê a Meclîsa Şêwra Islamî bimeşe.

Li vê pêwendiyê de rayedarên derece bilinde rejîmê û zaf ji sazî û ***dezgehên ne hilbijartî ên xwedî deshilat***, her yek bi terzekê ketine lezê bo vê çendê ku xelkekî zaftir bikêşne ser sindûqên deng danê, û ji aliyekî din ve e cehdê dikin ku kesên ser bi deste û girûpên wan bi xwe serî ji sendûqên den danê hilînin.

Bo hemû xelkê Îranê û bîr û raya giştiye derve re jî ron e ku hilbijartin li Komara Islamî de piştî rêve çûna yekem gera hilbijartinên Meclîsê ku li vir jî rê nehate dan ku nonerên xelkê Kurdistanê biçin bo Meclîsê, qet bi terzekî demokratîk û bi vî awayî ku li welatên demokratîk û pêşketî de rêve diçe, bi rêve neçûye.

Piştî hilbijartina Xatemiyê bi nav Reformxwaz ku tevî Meclîseke ser bi Parêzvanan rû bi rû bû û hêceta wî bo pêngav nehilgirtina ber bi encam gihandina qenc û sozên xwe, karşikêniya Meclîsê, û netebahî a Meclîsê tev dezgeha "îcrayî" (kiryarî) bû, û xelkê Îranê û yek ji wan xelkê Kurdistanê bi germî li hilbijartinên gera 6'mîn a Meclîsa Şêwra Islamî de pişkdar bûn, da ku bi qewlê xwe deshilata yasa danînê jî bidin dest Reformxwazan û tu hêcetan nedin dest wan, da ku li ser qewl û sozên xwe rabiwestin.

PDK Îranê jî hingê daxwaz ji xelkê kir ku li hilbijartinê de pişkdar bin û dûr ji baskên nava deshilatê de, dengê xwe bidin wan nonerên ku ji wan re cihê bawerî û hitbarê ne. Li encama vê dîtingehê û gav hilgitina xelkê li vê pêwendiyê de, Meclîsek hate hilbijartin ku 75 li sedê ye nonerên vê ser bi reformxwazan yan kesayetiyên serbixwe bûn.

Lê bi vî halî jî me dît ku ne Serok Komarê bi nav Reformxwaz û ne Meclîsa Reformxwazan çi karek bi qazancê guherînên baş û bi dest ve anîna aliyê kême xwastik û daxwazên xelkê ji destê wan nehat û evên li vê navberê de biryar dan û yasa danîn û bi rêve birin, tenê kes û aliyên ***ne yasayî*** û ne***hilbijartî*** bûn. Her bo mînak guhê xwe nedane wan hemû lome û gazinde û hawara ***Feraksyona Kurd*** li derheq cinayetên rejîmê li bajarê Sine, Serdeşt, Mehabad û . . . hwd, û çi bersivek pê nehate dan. Ku wisan e dibe hemû aliyekê re, kifş û eyan bibe ku ev Meclîsa bi her pêkhatekê be û nonerên Meclîsê her kesanek bin, her organ û kes û dem û dezgehên serweyî yasayê ne ku hukûmetê dikin, her ev bi xwe biryaran didin û bi xwe jî wan biryaran rêve dibin. Lewma heq nine xelk bi berbijar bûnê yan bi pişkdarî kirin li vê hilbijartinê de rewa û berheqî a bi derew ji Komara Islamî re çê bikin, baştir e lê bigerin da ku baskê Parêzvane Meclîsê bi dengê hindî kêmtire dengdanan pêk bîne, da ku li ber çavê bîr û raya giştiye navxwe û derve sexmeratî pişkdarî a xelkê li hilbijartinan de singê xwe nede pêş. Her lewma çavnihêriya me ji kesên xweşnav û kesayetiyên navdar ên nava civakê de ku xwediyê hitbar û kar tê kirina taybet bi xwe ne, eva ye ku bo berbijar bûnê nav nivîsiyê nekin û hitbara xwe li pêxema meremên rejîmê de gorî nekin. Li ser civatên xelkê Kurdistanê hewce ye ku bo ser sindûqên deng danê ne çin û li hilbijartinê de pişkdarî nekin û rê nedin ku Komara Islamî a Îranê ku li ber çavê bîr û nêrîna giştî henekên xwe li dengê wan û pişkdariya wan li hilbijartinê de biket.

Dibe eva jî bihê zanîn ku pişkdarî kirin li hilbijartinê de, heta eger bi dana dengê sipî û nivîsîna dirûşmên dijberî rejîmê jî be, dîsan jî hingê ev merema rejîmê ser digire, ku dixwaze ji rêya dezgehên propagende ên xwe ve îdiaya vê hindê bike ku xelk dîsan piştgiriyê jê dikin. Ku wisan e bila bi serwextiyeke zaftir ve rabûn û rûniştin tevî vê hilbijartinê bê kirin û bi pişkdarî ne kirina li hilbijartinê de, hem **"ne"**yeke din bi rejîmê li tewawetiya xwe de bê gotin û hem jî ji vê rêyê ve, vê walahiya mezin bêxne ber çavê bîr û raya giştiye cîhanê ku li navbera deshilata Komara Islamî û xelkê azadîxwaze Îranê bi giştî û xelkê Kurdistanê de bi taybetî, li rojevê de ye, û çûne jêr pirsyarê ye ne rewayî û berheqî a rejîmê zaftir ji berê bê nîşan dan.



**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**25.09.1382'ye Rojî, 16.12.2003'ye Zayînî**

## Şêwra Deshilatdar a Îraqê û der kirina Mucahidîn Xelkê Îranê

Roja çarşemî 19'ê Sermaweza sala 1382'ye Rojî hemberî 10.12.2003'ye Zayînî Şêwra Deshilatdar a Îraqê di daxuyaniyekê de da zanîn ku dê Rêxistina Mucahidîn Xelk li Îraqê der biket û dibe ev rêxistine heta dawiya meha December'ê li wî welatî de nemîne. Her wisan da zanîn ku kereseyên wê rêxistinê vê ji bo tolhildana zirar û xisara wan kesên ku li rejîma berê ya Îraqê ziyanbar bibûn, dê bihêne deste ser kirin .

Ev biryara Şêwra Deshilatdar a Îraqê, dûr ji vê çendê ku helwesta Mucahidîn Xelk çawa bûye û çi qas cihê pejra me bûye, lê dîsan jî nabe bi hikmekî rewa bihêt danîn û di bin her navekê de bimeşe, pitir bi qazancê Komara Îslamî a Îranê tewaw bibe. Em hêvîdar in Şêwra Deshilatdar a Îraqê bi bêhnek firehtir û çavekî wekirîtir mêzeyî vê pirsê biket û rêyekî berheqtir û baştir di vê pêwendiyê de bigire pêşiya xwe.

# Daxuyanî

## Di 55'mîn salvegera derçûna daxuyaniya cîhanî a mafên Mirovan de gelê Kurd û xelkê Îranê daxwazkarê piştgiriya cîhanê ji maf û azadiyên xwe ne

Roja 14'ê Octebera îsal, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, li ser û bendê 7'mîn salvegera teslîm (bidestdana) kirina 6 kes ji xebatkarên Partê bi Komara Islamî a Îranê ji aliyê Bizava Îslamî a Kurdistanê ve, nameyek ji bo birêz Kofî Enan Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî re şand.Hevalê xebatkar Ebdula Hesenzade ji bo Kofî Enan dabû xuya kirin ku rejîma Îranê di heyamê vî 7 salane de ji dan û belav kirina her cure zanyariyekê sexmeratî van azadîxwazên gelê Kurd xwe dûr xistiye. Di vê nameyê de hatibû ku: Piştî borîna vê heyama dûr û dirêj ji firotina 6 xebatkarên Partiya Demokrat bi Komara Islamî, niha jî bo malbat, kes û kar û hevhizrên van eyan nine ku ew zindî ne an hatine li dar vekirin, eger zindî ne di kîjan girtîgehê de ne û di çi rewşekê de dijîn û çima rê nadin çi kes wan bibîne, ger jiyana wan hatiye standin, çawa û li ku derê hatine mehkeme kirin û li ku derê hatine veşartin? Lewma daxwaz ji birêz Kofî Enan hatibû kirin ku bandor û şiyan û karîna xwe û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ji bo eyan kirina çarenivîsa wan 6 endamên Partiya Demokrat bi kar bîne.

Piştî belav bûna vê nameyê hejmarek ji kesayetiyên siyasî û Parlemanter li Ustiraliya, Îngilistan, Swêd û çend Komele, navend û rêxistinên siyasî û mirovhezê Kurdan û nêzî bi hezar kes ji dilsoj û xemxurên Partiya Demokrat û tevgera Millî – Demokratîke gelê me li Kurdistan û dervey welat, bi awayên cur bi cur piştgiriya xwe ji vê daxwaza Sekreterê Giştî yê Partê ragihandin.

Weke zor carên din ku xebatkar û azadîxwazên Îranê, dengê zilm jêkirina xwe, hevhizr û hevwelatiyên xwe bi guhê Sekreterê Giştî û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî gihandine û çavnihêrê vê bûne ku pêngavên micit bi merema daxwazên van bihê avêtin, lê bi encama dilxwaze xwe negihîştine, mixabin daxwaza arîkariya Sekreterê Giştî yê Partiya me jî ji birêz Kofî Enan, bê bersiv ma ye. Bi kêm girtina dengê daxwaza xelkê Îranê û pêngavên ne avêtina bi bandor û erênî ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve derheq daxwaz û çavnihêriya Îraniyan ji vê Rêxistinê ve, bû sedema vê ku Komara Islamî a Îranê bi rûyekî zêdetir û bê şermane dirêjî bi pêpes kirina maf û azadiyên xelkê Îranê û tepeser kirin û ji nav birina neyar û xebatkaran bide.

Li heyamê 2 mehên derbas bûn ji nivîsîna nameya Sekreterê Giştiye Partiyê re rêzokek jî tawan û cinayetên din dijberî xelkê Kurdistanê û azadîxwazên gelê Kurd hatine meşandin ku hin ji van evane ne:

1. Di 16'ê Octeber'a 2003'e Zayînî hemberî (24'ê Rezbera 1382'e Rojî) de, 3 ciwanên Kurd bi navên 1.Ehmed Zûdî kurê Mihemed Hesen, 2. Mensûr Merûfî kurê Mam Axa, 3. Azad Seîdî kurê Mihemed li gundê Nelas (li herêma Serdeşt'ê) ji aliyê hêzên leşkeriye rejîmê ve ketine ber êrîşê û hatin kuştin.

2. Di 27'ê Octeber'ê (5'ê Xezelwer'a 1382) de mirovek zehmetkêş bi navê Hemze Mam Axa, xelkê gundê "Binuxelîfî"a Serdeşt'ê kete ber êrîşa hêzên leşkeriye Komara Islamî û hate kuştin.

3. Di 4'ê December'a 2003 (13'ê Sermawez'a 1382 Rojî) de 2 ciwanên din yên Serdeşt'ê bi navên Ehmed Eşk Şîrîn û Elî kurê Resûl ji aliyê polîs û hêzên întizamiye Komara Islamî ve jiyana xwe ji dest dan.

4. Roja 5'ê December'a 2003 (14'ê Sermawez 1382) Celîl Zêweyî, xelkê Serdeşt'ê û endamê Partiya Demokrat ku 7 sal bû di girtîgehên Komara Islamî de êş û keser û îşkence didît û hikmê îdamê jê re hatibû dan, hate li dar vekirin.

5. Roja şemî 6'ê Decembera 2003 (15'ê Sermaweza 1382 Rojî), Ramîn Şerîfî, xelkê Seqiz û endamê Partiya Demokrat ku heyamê 7 mehan berî niha hatibû girtin û bi îdamê hatibû mehkûm kirin, hate li dar vekirin.

Hejî gotinê ye ku navên van 2 kesên îdam kirî, berê tevî navên komek ji girtiyên siyasî yên din ku bi mirinê hatine mehkûm kirin, bi haya kom û komele û navendên berevanî kirin ji mafên mirovan gihîştibû û hatibû daxwaz kirin ku hemû cehd û hewla xwe bi kar bixin heta ku ji tirs û xofa îdamê ve bihên rizgar kirin. Lê wekî em dibînin mixabin cehd û xebitîna navneteweyî û mirovhezan bi vî qasî nebûn ku Komara Islamî ji cî bi cî kirina cezayê diyarî kirî ji wan re, bihê zivirandin.

Ger li bajarekî biçûk û deverekî berteng mîna Serdeşt'ê di heyamê kêmtir ji 2 mehan de 6 ciwanên bêguneh û zehmetkêşe Kurd, ji aliyê hêzên bi nav întizamî ve tên kuştin, li seranserê Kurdistana Îranê hemû salekê bi dehan car ji aliyê hêzên leşkeriye vê rejîmê ve kemîn ji bo kasibkaran re tê danîn, teqe ji wan tê kirin û hejmarekî zêdetir ji vê tên kuştin û birîndar kirin.

Meşandina wan cinayet û tawanane li Kurdistanê, hevdem tevî kuştina xelkê bajarê "Serawan"'ê ji aliyê hêzên tepeserkere Komara Islamî û mil bi milê êrîşa Hizbullahiyan bo ser kom, civîn û meşên xwendekaran û wan kesên ku lome û rexne ji pêpes kirina maf û azadiyên mirovan ji Komara Islamî digirin, tiştekî hev berwar nine.

Hiştina dadmendên goriye kuştinên rêzokî li girtîgehê de û pêşgirtin ji rêve çûna rê û resma bîr anîna goriyan, lêkana civîna Xatûna Şirîn Ebadî, wergirê Xelatê Nobel a Aştiya 2003'ê, li dar ve kirina girtiyên siyasî yên Kurdistanê û vekirî hêlana destê hêzên leşkerî ji rijandina xwîna xelkê li ser û bendê 10'ê December (roja cîhanî a mafên mirovan) de, peyameke zor zelal û eşkere ji bo cîhanê têde ye. Ev peyame eva ye ku Komara Islamî li ser bin pê kirina maf û azadiyên mirovahiyê her wisan dê berdewam be û sedema vê berdewamiyê jî ji vê yekê çavkaniyê digire ku daxwazên Îraniyan hawar û gaziya zilm jê kirina wan bi destê rayedarên Komara Isalmî ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û civatgeha cîhanî ve buha û giringiya pêdivî jê re nehatiye dan. Ger rêveber û nonerên vê rejîmê derheq bi wan hemû zilm û cinayetane ku dijî hevwelatiyan kirine û dikin, di astê navneteweyî de bi awayekî yekdeng bihên şermezar kirin: Ger daxwaza dehan Partî, Rêxistin, civat, kom û Komele, saziyên siyasî, çandî û mirov dostên Îranî û bi milyonan hevwelatiyên piştîwanê wan, guh jê re bihê girtin û rayedarên Komara Isalmî bi encamderne sûç û cinayetan dijî mirovahiyê bihê nas kirin: Ger givaşekî navneteweyiye bihêz bo ser vê rejîmê hebe: Bêşik nikare wiha bi eşkere û bê şermane mafên mirovan bin pê biket û sûç û cinayetan bidomîne.

Li roja 10'ê December, roja cîhanî a mafê mirovan û 55 mîn salvegera derçûna daxuyaniya cîhanî a mafê mirovan de, bala mirovên demokrat û pêşkeftinxwaz bi giştî û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û komele û navendên navneteweyî yên alîgirê maf û azadiyên mirovî bi taybet bo aliyê reftar û siyasetên dijî mirovî yên Komara Isalmî di Îran û Kurdistanê de radikêşîn û radigehînin: Ger pêngavên pilez û bi bandor ji bo berbend kirina hovatî û cinayet afirandina Komara Islamî nehê avêtin, îdam kirina azadîxwazan, kuştina xelkê bi zal hatî û binpê kirina car tevî carê zêdetire maf û azadiyên mirovahiyê dê zaftir bibin.

Di vê demê de carekî din serexweşî û behîdarî û hevsoziya xwe bi malbat û xizm û kes û karên goriyên nû ye cinayetên Komara Islamî li Kurdistanê û parên dine Îranê radigehînin û cehda bê encame vê rijîmê ji bo têk şikandina îradeya şoreşvaniya Îraniyan ji bo dawî anîn bi dîktatorî û zordestiyê, bi tundî şermezar dikin. Her di vê demê de jî daxwaz dikin ku nûtirîn tawan û cinayetên Komara Islamî ji aliykê û hevdem bûna van bûyerane tevî 55'mîn salvegera derçûna daxuyaniya cîhanî a mafê mirovan û dana Xelatê Nobel a Aştiyê bi Xatûna Şirîn Ebadî, bibe handerek ji boy vê ku Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û kom û komeleyên navneteweyî bi giştî, bi helwestên xwe li hemberî Komara Islamî de çavnihêriyê bikin û li hemberî wan hemû êrîş ku bi eşkere ji aliyê vê rijîmê ve bo ser maf û azadiyên Îraniyan ve tê kirin, biryarekî berpirsyarane û netirsane bidin.

**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**10'ê December' 2003'ye Zayînî**
**19'ê Sermawez'a 1382'ye Rojî**

# Îdam û teror nikare tevgera Kurdistanê rawestîne

:Bavê Nûjîn

Xwendevanên hêja, her weke çend rojan berî niha li daxuyaniya PDK Îranê de hate belav kirin, careke din maşîna teror û îdama rejîma cinayetkar, hov û mirovkuje Komara Islamî kete rê û bi keser û kovanekî zaf, vê carê jî di girtîgehê de canê 2 şoreşvan û xurtên gernase Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi navên ***Ramîn Şerîfî*** û ***Celîl Zêweyî*** ji wan standin û wan şehîdan bi xwîna sore xwe rûpelên berxwedanî û xebat bo bi dest ve anîna azadî û mafê çarenivîs û qedera gelê Kurd di Kurdistana Îranê de mohir kirin. Rejîma kevneparêze Komara Islamî jî bi vê cinayetê, lekeyek reşe din bi karnama tijî ji cinayet û hovîtiya xwe zêde kir.

Wek tê zanîn yek ji xasmaniyên rijîmên dîktator û serberdayî, evaye ku bo man li ser kursiya deshilatê, xwe ji çi kiryar û cinayetek hovane naparêzin û ne tenê çi maf û azadiyekê bo civakê berçav nagirin, belkî gelek hovane dengê azadîxwazan tepeser dikin û girtîgehên xwe ji azadîxwazan tijî dikin û bersiva hemû dengeke lome û gazindan bi çek û xwîn rêtinê didin.

Li serdemê îro de ku piraniya welatên cîhanê cezayê li dar ve kirinê di qanûn û destûrên bingehîne xwe de hildigirin, yan jî na meşînin û hemû salê bi qasa van welatane zêde dibe, lê mixabin hêjî li cîhanê û nemaze di Rojhilata Navîn de hin rejîmên dîktator hene ku ne tenê çi hurmetekê bo maf û azadiyên mirovî nadanên, belkî canê mirovan ji cem van çi buha û girîngiyek nine. Yek ji van rijîmên ku heta niha jî li gor qanûn û yasayên Sedsalên Navîn dimeşe û binêşe û bingeha wê li ser cinayet û teror û kuştin û . . . hatiye ava kirin, rejîma kevnarperwere Komara Islamî a Îranê ye ku çi gav û demekê qanûn û rewşt û edetên navneteweyî berçav negirtiye û hemû salê bi dehan caran bi sedema bin pê kirina mafên mirovan û qanûnên navneteweyî ji aliyê Komele û Rêxistinên mafên mirovan û saziyên din ên wî warî tê mehkûm kirin û berdewam tevî pêlên gazinde û lomeyên navxweyî û derwekî berhingar e.

Hewceye bihê gotin ku eva ne destpêk û ne jî dawiya cinayetên Komara Islamî dibin. Heke em rûpelên dîroka cinayetên Komara Islamî a Îranê hilbidin, bi eşkere bo me derkikeve holê ku wan cinayet û xwînmijiyan temenek 25 salî hene û Her di destpêka hatine ser şola vê rejîmê ku ji aliyê Melayên kevnarperwer û li serweyî hemûyan Xumeynî ve bersiva daxwaz û xwestikên gelê Kurd bi agir û asin hate dan û ferman û "fitwa"ya ***Xezay***'ê bi dijî wî gelê bindeste Kurd îlan kir û daxwazkarên vê biheşta ku Xumeynî soz dabû wan, bo aliyê Kurdistanê ketin rê û xwe ji çi cinayet û kiryarekî mirar ne parastin û bajarên Kurdistanê bi xwîna xebatkar û şoreşvan û xelkê bê guneh û sivîl sor kirin, Gundên Kurdistanê kavil û wêran kirin, çale reşên xwe ji keç û xurtên Kurd tijî kirin û qenare û meydanên îdam û li dar ve kirinê bi rêxistin û bi hezaran girtiyên siyasî, xebatkarên Kurd, di dadgehên maşkanê û çend demî de bi mirinê mehkûm kirin û di bersiva vê çendê ku renge evane sûçdar nebin! Digotin: ***Hekî bê sûç û bê guneh bin vê biçne biheştê! Heke ne, gihîştine cezayê xwe!*** Rejîmê ev siyasetên dijî mirovî û hov tenê bi wê çendê kuta nekirin, belkî destên mirar û pîse terorîstên (bi nav dîplomat)!!! Komara Islamî gihîşte welatên biyanî û bi sedan azadîxwazên welatê me, weke Dr. Qasimlo û Dr. Sadiq Şerefkendî û sedan kesên din şehîd kirin.

Her çend rejîma Melayan karî hetanî qasekê xebata mafxwazaneye gelên Îranê weke: Ereb, Tirkman û Belûç tepeser biket, lê bi xweşî ve Kurdistan her mîna berê qurs û mikûm bi pêşengiya Partiya Demokrat di hemberî dijminan de sekiniye û bûye çepera berxwedanî û berevanî ji azadî û demokrasî û mafê neteweyî.

Her wekî Rijîma Paşatiyê nekarî bi îdam kirina serokê Komara Demokratîke Kurdistanê, Qazî Mihemd û hevalên wî dawî bi xebata azadîxwaziye gelê Kurd bîne, Komara Islamî jî bi wan hemû kiryarên hov û nemirovaneye xwe nikare xebat bo gihîştin bi serbestiyê rawestîne û wekî gotine: **Tobeya Gur mirin e**. Heta rojekê ku ev rijîme li ser deshilatê be, cinayet, teror, îdam, dizî, pisî (fisad) û bêkarî, û zaf pirsgirêkên siyasî, aborî, civakî û çandî vê her dem hebin û xelkê welatê me bi giştî û gelê Kurd bi xasmanî, roja xweş nabînin. Rêya herî baş bo dawî anîn bi wan hemû rojreşî û bêbextiyane hiloşandin û nehêlana vê rijîma mirov kuj e.

## Sipas û pêzanîn

Piştî weşandina yekem hejmara rojnameya **Agirî**, ku tevî pêşwaziyeke germ û berbiçave rewşenbîr û welatparêzên Kurd rû bi rû bû, ji aliyê hejmareke zaf ji xwendevanên **Agirî** û bi xasmanî edîb, nivîskar, zimanzanên dilsoje gelê Kurd û her wiha endamên xebatkare PDK Îranê ve, pêla pîrozbayiyan bi rêyên cur bi cur ve gihîştine destê me. Her wiha çendîn malper û weşanên Kurmancî jî li dane nasandina **Agirî** de rolekî erênî nîşan dan.

Hewceyî gotinê ye ku naweroka wan hemû pîrozbahiyane cuda ji eyan kirina seh û ogirya pak û dilsojane ye wan rêzdarane, gelek pêşniyaz û nêrînên buhagiran jî xistin ber çavên me, ku bê guman vê bandorek mezin li ser ziman û naveroka **Agirî** hebin û her li vê demê vê hêz û îradeya xebatkar û nivîskarên **Agirî** jî bi qawettir û mikumtir bikin.

Lewma bi navê rêveberên **Agirî** ve sipas û pêzanîna xwe pêşkêşî hemû wan kes û aliyan dikin ku tevî pîrozbahiyan, haziriya xwe ji bona arîkarî tevî **Agirî** bi me ragehandine.

Tevî hurmetan,
Desteya Nivîskarên Rojnameya **Agirî**

Li derweyî welat arîkariyên maliye xwe bo Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bidne wê hesaba bankî:

C.C.P PARIS 68040
M020
FRANCE

Fîşeya Bankiye vê jî bo vê adresê Poste bikin:

A.F.K.B.P.102 75623
PARIS CEDEX 13
FRANCE

Hejmar Telefon û Fax a têkilî kirin bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê re:

**Telefon: 00871762280073**

**Fax: 00871762280074**

# Cejna ji dayîk bûna Pêşmergên Kurdistanê pîroz be

Sitavk82@yahoo.com



Desteyek ji Pêşmerg'an li ser Gera Mame Şêx li Mirgewer a Urmiyê

Di nava her neteweyeke xebatkar de ku paşî berhingarî û berxwedanî û can gorî kirina xwe karîne nîrê zordariyê bişkênin û bi wemalîna sîbera reşe dîktatoriyê, azadî û qedera xwe bi destve bînin, hejmarek xortên vê neteweya xebatkar ku di refa herî pêşîne egîdî û mêrxasiyê de rolê erênî û qedersaz hebûne, navê wan di dîroka vî neteweyî de bi qedr û qîmeteke mezin ve tê tomar kirin û dibne ji bîr nekiriyê dîroka vî neteweyî.

Neteweya Kurd jî yek ji wan gelên cîhanê ye ku bi dirêjahiya zêdetir ji nîv sedsal e ku bi awayekî rêxistinî bo gihîştin bi azadî û rizgar bûn ji bindestî û koletiyê xebatê diket û Bi vê xebata domdare xwe ji serkeftinê nêzîk bûye. Bê guman her dekmekê ku basa vê tevgera Kurdistanê bête holê û em di nava wan hemû qehremanetî û cangoriyê ku gelê Kurd ji xwe nîşan daye, xwe gorî û mêrxasê herî rastîn û jêhatî hilbijêrin, ev egîde cuda ji Pêşmerge ku mêrxas û cangoriyê hemû oxirmeyên giran û berxwedanvanê wan hemû qonaxên dijware xebatê bûye, nikare kesek din be. Niha êdî kêm kes hene ku nezanin pêşveçûna Şoreşa Kurdistanê heta çi qasekê berê ked û xwe gorî kirina **Pêşmerg**'an e.

Dîroka navê Pêşmerge vedigere bo dema ava bûna Komara Demokratîke Kurdistanê di sala 1945'ê li bajaê Mehabadê de ku şiwirmendên vê komarê çekdarê Kurd bi Pêşmergê Kurdistanê navdêr kirin û paşê ji aliyê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve roja 26'ê Sermawez'ê ku roja dawî anîn bi temenê dîktatoriya rejîma Paşatiyê di sala 1945'ê li bajarê Mehabadê ji aliyê çekdarên Kurdan ve bû, wek roja ji dayîk bûna Pêşmergên Kurdistanê bingeh hate girtin. Ji vê demê ve hetanî niha Pêşmerge wekî xweştiviyê gel û remz û sembola rizxgarîxwazî û armancên berheqe mirovahiyê hatiye nasîn.

Wekî em dizanin bi dirêjahiya dîrokê dijminên gelê Kurd ne ku her ne xwestine daxwaz û pirsgirêkên Kurdan bi rêya aştîxwaziyê çareser bikin, belkî her tim di hewldanê de bûne ku bi rêya serkût û tepeser kirin, kuştin û webirandin, mişextî kirin û gelek rêyên din ên nemirovane weke hepsî kirina rewşenbîran û sivikatî û înkar kirina ziman û çanda gel, xwestine tovê Kurdan bibirînin û pênasa neteweya Kurd ji holê ra bikin.

Bi sedema wan kiryarên hovaneye dijminan bûye ku hêza berevankare gel (Pêşmerge) neçar bû ku bi xebata çekdarî li hemberî hovîtî û destrêjiyên dagîrkeran raweste û di pêxema qezenc û berjewendiyên neteweya Kurd de bi hezaran şehîd pêşkêşî baregeha azadiyê biket.

Ev berevaniya hêza Pêşmerge ne ku her nehêlaye pîlanên dijminan ser bigre û seha neteweyiye Kurdan biçilmis e, belkî kariye roj bi rojê evê seha neteweyî di hundirê kit kitê welatparêzên Kurd de xurttir biket. Lewma niha navê Pêşmerge li hemû perçeyên Kurdistanê da û di nav dilê hemû Kurdeke welatparêz de wek naveke pîroz cihê xwe girtiye û zêdebarî cehda dijminan ku dixebitin navê Pêşmerge di asta navneteweyî û di nava Kurdan de bi peyvên kirête wek: Rêgir, dijî şoreş, têkder û . . . bi nav bikin û li berçavên xelkê reş biket. Lê bi egera wan kiryar û rêbazên berheq û miroviye Pêşmergeyên Kurdistanê ne her ev pîlanên dijminan ser negirtin, belkî bi korahiya çavê neyaran navê pêşmerge bûye wate û sembola azadîxwazî û rizgarî û hêviya gelê belengaze Kurd li her aliyeke Kurdistan û cîhanê de.

Ku wisan e eger hêza Pêşmerge kariye heta niha di qonaxên herî dijwar de bi xebata çekdarî û cangoriya bê mînake xwe, berevaniyê ji gel û welat biket, di dema îro de bi berçav girtina rewş û kawdana siyasiye dever û cîhanê hewceye rewşenbîr û hemû welatparêzeke Kurd vê berpirsayetiya bihagiran bigrin stûyê xwe û di warên cur bi cur de bixebitin, da ku bikarin hindî zêdetir gelê Kurd bi mafên rewa û zewt kiriye xwe şareza bikin û bi vê zane bûnê xebata azadîxwaziyê berfirehtir û hêviya serkeftinê nêzîktir bikin.

Maye bêjîn bila 26'ê Sermawez'ê roja bîr anîn û rûmet girtin ji xebat û canfîdayî kirina xebatkarên Kurdistanê ji hemû gelê Kurd pîroz be.

# Ava bûna Partiyek nû ji bo kurdistan a Îranê

Nêzî meheke berî niha hinek dezgehên ragehandinê li rêya çend weşanan nûçeya ava bûna partiyek bi navê ***Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê*** bo Kurdistana Îranê weşandin.

Ava bûna her Partî û Rêxistinekê bo hemû evên ku bawerî bi demokrasî û piloralîzmê hebin tişteke xwezayiye û heta cihê pêşwazî kirinê ye jî, lê ev yêke ku partiyek yan rêxistinek li derve ra bo gihiştin bi hindek meremên taybetiyên berteng, ew jî ne bo vec û berjiwendiya kurd, belkî li dirêjiya dijberî û dest têverdana aliyek derekî li kar û barên perçeyên din ên kurdistanê de ava bibe, nikare cihê bawerî û pirsiyarê nebe.

Hem li belavokên ava bûna vê partiyê û hem li hinek nîşaneyên din xuya dibe ku ev partiye dest çê kiriyê P.K.K'ê ya (pêşîne) û her wiha nusxeyeke li siyasetên vê rêxistinê ku heyam bi heyam bi navên cuda cuda bo Kurdistana Îranê dinivîsîne. Em bixwazin yan nexwazin Kurdistan hatiye par ve kirin û Kurdên her perçeyeke Kurdistanê li têkoşîn û xebata xwe bo gihîştin bi mafê neteweyî û azadiyên xwe berpirsyar in û terzê xebat û rewşa hundiriya her yek ji wan welatan ku Kurdistan di navbera wan de hatiye par ve kirin, tevî hev cudan e. Ji ber vê çendê partiyek wisan dest çêkirî tenê di heyamk kurt de vê bikaribe xebatê bidomîne û hejmarek kêm ji kesên ne şareza bo aliyê xwe rabikêşe, lê belê tu caran nikare bo heyamek dirêj dewamê bi temenê xwe bidet û xelkek berçav li devra xwe kom biket.

Bêşik civatên xelkê Kurdistanê bi giştî û rewşenbîr û ciwan bi taybetî, vê bi çavekî vekirî mêzeyî çawaniya pêk hatin û merem li ava kirina partiyek wiha biken û di vê derheqê de vê nêrîn û helwesta xwe hebin.

# Hevdîtinên Sekreterê Giştiye Partiyê li Norwêj'ê

Roja pêncşemî 18'ê December'a 2003'e Zayînî hemberî 27'ê Sermawez'a 1382'e Rojî hevalê xebatkar Ebdula Hesenzade Sekreterê Giştiye PDK Îranê seredana Parlemana Norwêj'ê kir û ji aliyê birêz "Turbiyun Yagland" serokê Komîsyona derve ye Parlemanê ve hate pêşwazî kirin.

Hejî gotinê ye birêz Yagiland Serok Wezîrê berê ye welatê Norwêj'ê bû û kesayetiyeke navdare navneteweyî û serokê Komîteya Rojhilata Navîn di Entirnasyonala Sosyalîst de ye. Di destpêka vê hevdîtinê de bûyerên vê dawiyê yên deverê, Îranê, Kurd bi giştî û bitaybetî Kurdistana Îranê ketin ber bas û guhertina hizr û ramanan. Û her du aliyan ramanên xwe di vê derheqê de beyan kirin. Piştre bas li ser têkiliyên du alî yên navbera PDK Îranê û Entirnasyonala Sosyalîst hate kirin.

Piştî vê hevdîtinê birêz Sekreterê Giştiye Partiyê seredana navenda Radiyo û Televîzyon a Norwêj'ê kir û tevî nûçegihanê vê saziyê Xatûna "Karî Girtine Elside" got û bêj kir.



Piştînîvro ya vê rojê birêz Sekreterê Giştiye Partiyê bo careke din seredana Parlemana Norwêj'ê kir û tevî Xatûna "Ugutwale" ji Partiya Sosyalîst a çep hevdîtin û hevpeyvîn kir.

Xatûna "wale" xîmdanerê girûpa karê Kurdan li Parlemana Norwêj'ê û serokê Komîteya Lêkolîn di Parlemana wî welatî de ye. Pêştir Partiya Sosyalîst daxwaz ji PDK Îranê kiribû ku têdîtinên xwe li hemberî bûyerên hundire Îran û Kurdistanê bide nas kirin, ji bo vê yekê ku Partiya Sosyalîst bi baldan bi wan têdîtinane helwestên xwe diyar bike. Lewma vê hevdîtinê bihagiranî û girîngiyekî xasmanî ji bo her du aliyan hebû.

# Li kiryarek terorîstî li Hewlêrê, 4 kes kuştî û 101 jî Birîndar



Demjimêrî 11:50 pêşnîvro 24'ê December'a 2003 (4'ê Befranbar 1382'ye Rojî), terorîsteke bi tirimbêleka bombrêjkirî li ber deriyê Wezareta Navxwe ya hukûmeta herêma Kurdistan li Hewlêrê, xwe bi tirimbêlê ve teqand.

Li encama vê teqînê de, bilî kuştî û birîndaran avahiyê wezaretê û gelek xanî û avahiyên din jî ziyaneka madî dîtin.

Li teqîna han de keçek (13) salî û şofêreke Taksiyê û du polîsên Wezareta Navxwe hatine kuştin û 101 kes jî Birindar bûn, ku piraniya wan xelkê sivil û jin û zarok in.

Li gor rojnameya XEBAT Organa Partiya Demokrat a Kurdistanê, curê vê tirimbêla bomberêjkirî Pîkap TOYOTA bûye û nêzî 150 Kg TNT tê de teqiyaye.

# Terorîzma Komara Islamî li Îraqê dixebite

Li gor wan nûçeyên ku piştî hiloşîna rejîma Bees ya Îraqê, ji aliyê çavkaniyên bîyanî ve tên ragehandin, eyan dibe ku rejîma Komara Islamî a Îranê bi merema aloz kirina rewşa tenahî û asteng çê kirin li ser rêya ava bûna rejîmekî demokratîk û Federal li Îraqê, xwe ji çi kiryar û destêverdanekê na parêze. Bo cî bi cî kirina vê meremê li rêya Balyozxaneyên xwe ve her hêsan kariyekê bo çê kirina paseportan ji bo wan terorîstên ku bo Îraqê têne şandin cî bi cî diket. Cuda li vî karê han, rejîma Îranê li dirêjiya sînorên navbera xwe û Îraqê, bi awayên cur bi cur terorîstan dişîne hundirê Îraqê.

Di vê pêwendiyê de li gorî çavkaniya ***Firans Pirês***: berpirsyareke leşkeriye Emerîka ragehandiye ku hejmara wan terorîstên biyanî ku di nav Îraqê de hatine girtin, hetanî niha xwe gihandiye sedan kesan û di nav wan terorîstane de 70 kes Îranî bûne.

# Erd hejê dîsan bûyerek mezine mirovî afirand

Demjimêr 5:28 deqîqên berespêdehiya roja Înê, 5ê Befranbara 1382'ê Rojî, 26.12.2003'ye Zayînî, erd hejek ku rijdiya vê 6/3 pileyên rîşterê bû, bajarê ***Bem*** li parêzgeha Kirman ya Îranê hejand. Rijdiya erdhejê û darizîbûna xaniyan di hember erdhejê da, bûne sedemê vê yekê ku ev bûyera xwezayî ziyaneke mezine canî lê derkewe. Li gorî nûçe û raporan, bi hezaran kes hatine kuştin û dehan hezar kes jî birîndar bûne. Xelkekî zaf di bin dar û berên xaniyên herifî da mane. Li gor texmînan, renge hejmara goriyan xwe li hejmarek zaf zêdetir bidet. Cuda ji wan hemû kuştî û birîndaran, 60 ji 100'ê ye bajêr wêran bûye û ev xelkê ku ji vê qewimînê de, bi birîndarî yan bi silametî rizgar bûne, di vê sir û seqema zistanê de bê mal û hal û ser pena ne.

Ger em bala xwe bidin vê rastiyê ku li welatên pêşkevtî erd hejên wêne bi qawettir, ziyana canî û maliye gelek ji wêne kêmtir lê ketiye, bo me der dikewe holê ku sedema despêkiye bûyera qir bûnê, dizivire bo bêpariya xelkê Îranê li wan xaniyên ku bi terzeke zanistî hatibin ava kirin û xweragir bin. Ji wêne jî taltir eva hane ku dezgehên dewlwtî ên Komara Islamî bi sebebên cur bi cur, wekî zor bûna navendên biryar danê, berfireh bûn û fesad û genîtiya malî di sîstema deshilatdariyê de û bîyanî bûna para zore berpisyar û rayedaran tevî xelkê, li dema rûydana wan cure qewimînan da, bi wî awayê ku hewce ye, karê hawarê de çûna lêqewimiya li dest nahêt û li encamê de, hijmara goriyan zêde dibin.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, derheqî wê bûyera dilêş, hevderdiya kûre xwe ji bi cî mayî û kes û karên goriyan, xelkê bajarê Bem'ê û gişt xelkê Îranê radigehîne û di behî û kovana wan de xwe bi şirîk dizane. Partiya Demokrat tevî serexweşî li malbat û cî mayî yên goriyan, qenc bûna her çî zûtire nexweş û birîndaran bi hêvî dixwazin.

Her li vê demê de ji xelkê kurdistan û Îanê dixwaze bo hawarê de çûna lêqewimiyan, ji çi cure arîkaiyekê xwe neparêzin û daxwazê ji wan diket ku li rêya noner û bavirpêkiriyê xwe ve rêxistin û saziyên bavir pê kirî û ne dewletî, li zibara hawarêde çûna xelkê bajarê Bem û di pêvajoya zivirandina wan bo ser jiyaneke normal, çelengane pişikdariyê bikin.

Bo dewlet û navend û saziyên navneteweyî bi erk dizanîn, bi lez milê xîretê jê vemalin û hewara xelkê erd hej lêdayiye bajarê Bem'ê de herin.

Bi hêviya hevpişkiya çelengane û erêniya xelkê Îran û civatgeha cîhanê bo hawarêdeçona erd hej lêdayiye bajarê Bem û ava kirina jiyana dubareye wan.

**Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistan Îranê**
**5 Befranbara 1382'e Rojî, 26.12.2003'e Zayînî**

# Bêkarî giraniyek mezin û çekek herifîner di hemberî civaka Îranê

kurmanchakki@yahoo.com

Dewleta Komara Islamî a Îranê di mehên derbazbûyî de ragehand, nirxa bêkariyê li Îranê di midehê 2 sal û nîvên derbazbûyî de 2/8% hatiye xwar. Wezîrê Karê Komara Islamî, Sefder Husêynî di ragehandina xwe de li rêya televîzyonê da zanîn ku nirxê bêkariyê li Îranê de li sala 1379 (2000) bo dawiya sala 1382 (2002) li 14% gihîştiye 11/2%'ê.

Li gor serhijmêriyên (amar) fermiye Komara Islamî, nirxê bêkariyê li salên 1379, 1380 û 1381 bi wî awayî bûye: 14/25, 14/2 û 12/8%.

Di gel wê ku Komara Islamî basa kêm bûna hejmara bêkara dike serhijmêriyên fermî wiha nîşan didin ku di Îranê de bi awayek fermî 2 milyon û 500000 kes bêkar in. Ewa di halekê de ye ku nirxê bêkariyê di Îranê de gelek ji wê yekê zêdetire û Komara Islamî tenê wan kesan hesab dike, ewên ku li deftera îdareya kar de navên xwe nivîsandine.

Di programa dewleta Xatemî da hatiye ku hersal diviya aliyê kêm 760 hezar kes firseta kar bo bête dan. Dihalêke de di 3 salên derbazbûyde li ser yek 1 milyon û 614 hezar kesan karîne bikevin bazara kar.

Sala derbaz bûyî dewleta Xatemî bi pilana *"zerbetî"* û bi bodceyek 900 milyar Tûmenî karî bo 300 hezar kesan îmkanên kar kirinê pêk bîne.

### Arîşa bêkariyê

Gelo tu bêjî dewleta komara Islamî hemû ewa ku di şiyana wê de ye bikar bîne bo ji nav birina nexweşiya bêkariyê li civaka Îranê de, yan hinek armancên din pişt wê meselê hatine nivistin ku civaka Îranê û xasmayî Kurdistanî jê agahdar nînin?

Bas kirina derheq siyaseta bêkariyê li ser û bendên hilbijartina meclîsa 7. ya Komara Islamî bo mirov wê pirsyarê tîne holê, gelo birastî Komara Islamî girifta bêkariyê wek pirsgirêkek mezine civakî mêze dike, yan kar bidestên rejîmê dixwazin bi wî awayî bala û sirinca xelkê Îranê li meselên bingehîne civaka Îranê, Yanî nebûna ***sîstemek demokratîk*** û ***edaleta civakî*** dûr bikin. Bê bersiv xuya ye ku rayedarên Komara Islamî 25 salan dem hebûn hetanî bikaribin vê pirsgirêka mezine civakî çareser bikin û nebin sebebê wê yekê ku zêdetir ji nivîya xelkê Îranê di felaketa aborî de bijîn.

Bo me siruştiye ku em wek Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li ser mesela bêkaryê û vê pirsgirêkê li mêzegehek netewî û her wisa li mêzegeha partiyekê ku di piraktîka siyasiye xwe de armanca xwe ya yekem pêk anîna civakek adilane daniye, bisekinin. Di rastiyê de peyvîn li ser pirsgirêka bêkarî û giriftên aborî ji bo me mîna peyvîn li ser pirsgirêka neteweyî ji bo neteweya Kurd li Îranê de giring û kilîliye. Diber ku giraniya bêkariyê li Kurdistana Îranê xasmayî bi awayeke berfireh ketiye ser istûyê gelê Kurd û pêşiya pêşveçona xelkê Kurdistanê li bin wê giraniyê de hatiye girtin.

Her wekî gelek karnasên aborî dibêjin, merema Komara Islamî ewa nine ku bêkariyê weke pirsgirêkek bingehîn çaresere bike, lê dixwaze dem bi dem weke merhemek bo ser birînan, bo kêm kirina êşa wê bikar bîne û bi wî awayî him xelkê zêdetir bi xwe mijûl bike û him jî armanca Xameneyî ko bas kirin li giriftên aboriye "mustezefan" giringtir li azadiyên demokratîke wê bi cih bên.

Xatemî bo dewra duyeme Serok Komariya xwe û ji bo çareser kirina pirsgirêkên aboriye civakên Îranê basa ramyara bêkariyê dikir. Bi wê manayê ku dewleta Komara Islamî dixwaze li hemû potensiyalên karkirina civaka Îranî behrê wergire û şiyana mirovên xwedî pispor bibe ser û pêşiya helatina mêjiyan li Îranê bigre.



*Nerazî bûna karkeran li Îranê*

Ew dirûşma han bi ciwanî mirov dikaribe bi mêzekirin bi armancên tenê ser kaxezê hatî nivîsandiye rêberên Komara Islamî bibîne. Girifta mezine hukûmata Îranê nebûna pirogramek karnasane û ewroyiye ji bo geşe kirina rewşa aboriye welat û pêkanîna hel û mercên wilo ku beşa taybetî bikaribe bi azadî û bêy tirsa pêşerojê bingehên xwe bihêz bike.

Vêgavê nifûsa Îranê xwe digehîne 66 milyon kesan û bi gor statîkên fermiye komara Islamiye Îranê ji her 3 kes Îraniya kesek li temenê 15 – 29 salî de ye. Wateya wê ewa ku hersal 700 hezar kes bi wan kesên ku hewceyî bi kar hene zêde dibin û li hember de şiyana Iranê di çarçêweya wê Komara Islamî de bo bersivdan bi hewcehiya bazara bêkara roj bi roj kêm dibe. Di rewşeka herî îdeal de Komara Islamî wê bikare salê tenê bo 700000 kesan firseta kar pêk bîne, bi wî awayî civaka Îranê wê dîsan ji bin giraniya 2,5 milyon bêkara binale û civaka Îranê diviya çavnihêra nexweşiyên civakiye din jî bibe.

### Li Kurdistanê ev arîşe hîna girantr e

Amarên fermiye Îranê bi giştî dixwazin derd û elemên civakên Iranê kêm nişan bide. Li Kurdistanê ku li dema hatine serkara Komara Islamî hetanî îro li ambargoya abûrî de bûye û rewş wê li gişt Îranê xerabtire. Bêkariyê piraniya malbatên Kurd kirine qurbaniyê xwe. Ciwanên kurd ji bo bi dest anîna kar û jiyandina malbatên xwe naçarin Kurdistanê ber bi başûr yan navenda Îranê bi cî bihêlin. Diber nebûna xizmetên giştî pisporên Kurd nikaribin li Kurdistanê karê xwe dom bikin û di encamde bajarên mezne navend û başûr û ser bajarê Îranê dibe navenda kar kirina pisporên Kurd.

Rewşa han wek encama siyaseta sîstematîke Komara Islamiye Îranê di hemberî xelkê kurd, bûye sebeba birîndar tir bûn û nasiktir bûna civaka Kurdistanê dihember gelek nexweşiyên civakî de. Bi giştî arîşeyên weke:

* Nirxa bilinde bêkariyê
* Nebûna îmkana kar kirinê li Kurdistanê
* Siyaseta ramyariye Komara Islamî li Kurdistanê de
* Ji nav birina imkanê geşe kirin,
* Xwe bi kar xistin
* Pêk ne anîna navendên abûrî li Kurdistanê

lewma sedema wê yekê gelê Kurd li Kurdistana Îranê bibe qurbaniyê şerê aboriye wê rejîmê. Civaka Kurdistanê di hember wê siyaseta Komara Islamî de gihîştiye astek gelek nexweş û birînen kûre civakî di nav xelkê kurd de roj bi roj zêdetir dibin.

Hemî ew derdên hatin bas kirin beşek biçûk ji wan giriftaneye ku rejîma Komara Islamî bo xelkê Îranê û gelê Kurd bi taybetî pêk aniye. Di hember wê rewşê de hêz û bizavên di saheya Kurdistanê de diviya bi awayek berfireh polîtîkek çalake abûrî ji bo wekirina rêyekê bo derbaz bûn ji wê tengasiyê bikin armanca xwe û wê armancê bikin dirûşmên xwe yên siyasiye ser û bendên hilbijartina meclîsa 7. û bi wî awayî baykot kirinek çalakane wek altirnatîvek bo bilind kirina xwestên neteweyî û aborî vê bikaribe pilanên Komara Islamî bike bilqên ser avê.

Ji rojevtirîn xwestê xelkê Kurdistanê: 1. Pêk anîna xizmetên çalak kirina bazirganî û wekirina nawendên nûye abûrî, 2. Pêk anîna xizmetguzarî ji bo wan malbat û kesên ku nikaribin bi hêasanî bikewin nav bazara kar de, 3. Rakirina ambargoya abori li ser Kurdistana Îranê û bikar anîna siyaseteka aboriye evroyî ku têde xelkê Kurdistanê bi xwe li pilandanîn û geşekirina aboriya welatê xwe de beşdar bin, vê bikare destpêkek nûjen bît ji bo derman kirina birînên kûre aboriya civaka Kurdistanê.

Xuyaye ku Komara Islam ne şiyana wê yekê heye û ne viyana wê.

# Ciwanên Kurd li bin sîbera Komara Islamî a Îranê

✍:Selîm Zencîrî

Her civakek ji çend qatên cur bi cur pêk tê û em dikarin bêjin çalaktirîn, bi bizavtirîn û berfirehtirîn qat di her civakekê de qata ciwana ye. Ji ber ku ciwan in ku dikarin bi navê pêşerojê bipeyvin û di hemû beyavan de guhertinan pêk bînin.

Eyan e dema ku çi zêrevanî an perwerdeya pêwîst ji bo ciwanan nehê kirin û pêdiviyên serdem ji wan re nehên misoger kirin ku di pêşvebirina civakê de rolê herî serekî bilîzin , di encam de qatekî bê bandor u nexweş jê der dikeve û dibe sedema wê çendê ku bandor û rengvedanekî xirab li ser civakê hebe.

Berevajî vê çendê jî dema ku di civakekê de hemû îmkanat û fakterên alîkar ji bo ciwanan bêne berhev kirin, bê şik ev civake ji hemû alîyan ve dê pêşkevtinê bi xwe bibîne. Lewma girîngîdan bi qata ciwan, pûte dan e bi pêşeroja civakê .

Lê bi dirêjahîya dîrokê xuya dibe ku ciwanên kurd pitir ji her qatekî din yên civakê tûşê girêpêçk û asteng û zilm û zoriyê bûne û herwiha ji aliyê dagîrkerên Kurdistanê ve hatine heps kirin, îşkencedan û berevrûyê îdam kirinê bûne, an jî bi neçarî ji welat hatine dûr xistin, ji ber wê ku seha neteweyî û berxwedaniyê di nava wan de bihê lawaz kirin. Her li ser vê bingehê rewşa ciwanên kurd li Rojhilatê Kurdistanê di bin deshilatdariya rejîma Melayan de rû bi rûyê qonaxekî taybetî bûye

Rejîma Komara Islamî her di yekem roja (piştî Şoreşa sala 1979'e Zayînî) ku deshilat bi destve girt, gelek pirsgirêk û rojreşî bo xelkê Îranê tevî xwe aniye û yek ji van qatan ku dîktatoriya melayan zortirîn gorî lê standine ciwanên kurd bûne

Pişkekî zaf ji vê qata ciwan her di despêkê de, kakila dij bi azadî a Komara Islamî ji wan re kifş û eyan bibû û bi piştîvanî ji siyaset û helwîstên partî û rêxistinên şoreşgerî dijberî siyaset û helwestên şaş ên rijîma kevneparêz sekinî ne

Komara Islamî li sala 1979'e Zayînî û piştî bi destve girtina deshilatê şerekî naberamber bi ser xelkê Kurdistanê de sepand, tenê ji ber wê ku gelê Kurd daxwaza mafên xwe yên rewa dikirin, bi terzekî hovane hatin tepserkirin û di encam de bi êrîşên leşkerî, wêranî û qir kirina xelkê vê deverê da hate dest pê kirin.

Em dikarin bêjin ku ev şere heta niha jî di form û metodên cur bi cur de dijberî gelê me dirêjî heye û di demê berxwedanî û berevanî kirina çekdarane û berheq ya gelê kurd, ciwanên kurd bûne sotiyê serekiyê vî agirî ku neyar û nehezên azadiyê ji bo gelê kurd di Îranê de hil kiribûn.

Vê rejîmê her tim dijberiya vê çendê kiriye û diket ku ciwanên Kurd nekarin armancên xwe destve bînin û ji hemû îmkanatên xwendin û perwerde kirinê hatine bê par kirin. çiqas ji destê vê rijîmê têt, ciwanan digire, dikuje û îşkence diket, di girtîgehê de tûşê nexweşiyên din mîna: Îtiyad, fesad û reş bînî derheq bi pêşerojê, hwd . . . diket.

Tevî vê çendê ku gelê Kurdistanê di 25 salên derbaz bûyî de her gav ketine ber tepeser kirin û şerê sepandî yê Komara Islamî û zarok û ciwanên kurd bi sedemên olî û neteweyî di xwendingeh û zanîngehan de rû bi rûyê ferq û cudahiyekî zaf dibin û rijîmê rewşekî wisa pêk aniye ku her cure çalakî û liv û bizaveke ciwanan ji aliyê saziyên bi nav ewlekarî û tenahî yên rejîmê ve bi tundî dikevine bin zêrevaniyê.



Hinek ji ciwanên Îranê mijûlê kişana muxediratê

Kurdistana Îranê li gor herêm û bajarên din yên Îranê bi sedema siyasetên şaş û dijî gelî a komara Îslamî, paşverûtirîn herêm di welatekî paşverû de ye û bê şolî ku arîşe û astengên herî mezin ên ciwana ye û Kurdistanê jî ku bi sedema şerê Îran û Îraqê derbekî giran jê ketiye û rejîmê tevgera rizgarîxwaz a gelê Kurd kiriye hêceta vê çendê ku xwe li ava kirin û damezarandina pirojeyên aborî di kurdistanê de dûr bixe. Ji ber bêkariyê hijamarekî zaf ji ciwanan li sînorên Îraq û Tirkiyê mijolê karê qaçax bûne û di encam de gelek ji wan bûne goriyê teqîna mayîn an ketine ber agirbarana çekdarên rejîmê, an jî ji bona peyda kirina bijîva bo malbatên xwe rû dikine bajarên mezin ên Îranê û dûr ji kes û karên xwe dijîn.

Aliyekî din, koçbar bûna ciwanên Kurdistanê ji bo welatên Rojavayî ye, bi sedema vê cehenema ku deshilatdarên Komara Islamî ji boy ciwanên Kurd pêk anîne bi awayên cur bi cur xwe digehîne Tirkiyê û li UNHCR'ê daxwaza penaberî û veguhastina xwe ji bo welatên din dikin .

Pirsgirêkekî din ku dibe îşare pê bihê kirin, xebat û tekoşîna saziyên tepeserker û bi nav ewlekarî yên rejîmê ye ku bi terzên cur bi cur ji bo şikandina kesayetiya şoreşvanî a ciawanên Kurd û tûş kirina wan bi mewada malwêlankere muxediratê ye.

Komara Îslamî a Îranê zaf caran bi hêceta vê çendê ku Îran şademara tiranzîtî a mewada muxedir ji bo Ewropa û dervey welat e û dibe pêşiya vê bihê girtin û mîna çekekî siyasî û aborî mifahê ji vê mijarê werdigre. ji ber wê ku yekem: Bi navê xebat dijberî mewada muxedir her sal bi dehan milyon Dolar alîkariyê ji kom û komeleyên navnetewî yên pêwendîdar bi xebat dijî mewada muxedir werdigre. Duyem: Dema ku di warê siyasî de di nava xelkê de hest bi tirsê diket, dest bi girtina xelkê, bi taybet qata ciwanan û belavkirina mewadê diket û bi wî terzî dixwaze ciwanan ji xebata berheq a xwe ku azadî û demokrasî ye dûr bimînin.

Komara Islamî ji rêya belavkirina mewada malxirabker û bi muitad kirina ciwanên Kurd, rê ji bona meşandin û peya kirina siyasetên xwe yên pîs û çepel xweş diket. ji ber ku mirovê muitad ji bo bidestve anîna vê mevadê dikeve bin bandora hemû cure kiryarekê û tenê di hizra bidestve anîna vê mewadê daye .

Lewma rejîm bi belavkirina vê mewadê ne tenê ciwanan ji pirsên siyasî û xebat dijberî kewneparêziyê dûr dixe , belkî ji bona meşandina siyasetên dijî gelî yên xwe mifahê jê werdigre. Ji ber ku mirovê muitad îrade û helwesta wî di gireva vê mewadê de ye û bikar anîna wê dibe sedema wê çendê ku têkiliyên navbera endamên malbatên Muitadan bihê lawaz kirin û hetanî seha neteweyî jî ji bal wan bê pûte tê nîşandan. lê mixabin bi sedema siyasetên çewt ên rayedarên rejîma Komara Islamî ew belaya malxirabker mîna tişteke edetî di nava bajêr û bazar, îdare, xwendingeh û heta girtîgehan de jî bi azadî tê peyda kirin û ji hemû kesê re eyan e ku rayedarên Komara Îslamî di ***"tiranzît "*** û belav kirina vê mewadê de rolekî serek dilîzin.

Eger rejîma Komara Islamî maya xwe ji kar û barên welatên din de nedet û îmkanatên welatê me ji bo deste û gurûpên terorîstî mizext neket û eger bi mezaxtina pareyekî zaf, sedan kes ji têkoşerên siyasî li dervey welat teror nekiribain her wiha dest bi kirîna çek û ava kirina girtîgehan nekiriba, berevajî wan kiryaran eger li rêya mifah wergirtin ji çaxê bêşolî, dana zaniyariyên pêdivî li ser bandora xirab a madên bêhişker, darêtina bernameyekî bi ser û ber û pêkanîna rewşekî wekirî, derfetên şolî û misoger kirina jiyaneka serbixwe û dabîn kirina îmkanat û teknolojiyên pêwîst ên vî serdemî bo ciwanan bi kar anîba, bê şik ev hemû asteng û girêpêçk ji bo xelkê me, bi taybet ji bo ciwanan nedihatne pêş.

Lê mixabin hetanî dema ku sîbera komara Islamî li ser Îran û Kurdistanê be zêdebarê girêpêçkên ku hatinî bas kirin, dehan pirsgirêk û arîşeyên din jî vê bikevine rojeva civaka Îranê.

Ku wisan e wezîfeya ser milê hemû aliyekê ye ku ji bo şiyar kirina xelkê kurdistanê ji pîlan û kiryarên Komara Îslam, xebat ji bo herifandina vê rejîmê û bi taybet rizgar kirina ciwanên welat ji wan arîşeyane ji çi hewl û xebatekê xemsarî nehê kirin û dibe ji her cure hewl û têkoşîneke mifah bihê wergirtin.

***<u>Jêder:</u>***

***Kovara Lawan, hejmar 2,5,6,9,10***

# Zimanê me nasnameya me ye

:Azad Kurdî

a ê û î k b

Neteweya Kurd bi sedan salane ku ji bo azadî û serbestî ji zilm û zora dewletên dagîrker û bi merem û armanca bi dest ve anîna mafê berheqe çarenivîs û qedera xwe xebat û têkoşînê diket. Dîroka bizav û berxwedaniya îro ye Kurdan vedigere bo piştî şerê dîrokiye ***Çaldiran***'ê di sala 1514'an de ku Kurdistan (welatê Kurdan) ji aliyê dagîrkeran ve hate pişk(parve) kirin û derfet û dem ji bo yeketî û hevgirtina gel bo gihîştina bi armancên dîrokiye xwe, pêk nehat. Perçe bûna Kurdistanê di nava 4 dewletên Îran, Tirkiye , Îraq û Sûriye bû sedema zaf pirsgirêk û arîşeyan û civaka me ya Kurdan heta niho jî nekariye pişta xwe di bin bandora wan pirsgirêkane rast biket, ku yek ji wan pirsane rewşa zimanê neteweyiye Kurdan e.

Em Kurd neteweyek bindest in. Dewletên dagîrkere Kurdistanê heta niha bi fermî dibêjin Kurdistan û Kurd tu neye! Ev siyaseta îflas û înkar kirinê bandorê li ser nasnameya Kurdî diket. Ji her aliyekî ve asîmîlasyoneke dijwar û tund li ser Kurdan heye. Mixabin azadiya xwendin û nivîsandin bi zimanê Kurdî cuda ji Başûrê Kurdistanê, hêj tê tepeser kirin û derfeta şîn bûna gula zimanê Kurdî nayê dayîn.

Dema ku dewletek zimanê neteweyekê berbest û qedexe dike û bi hemû dezgehên xwe bixebite ku ev qedexe kirina di jiyanê de bimeşe, êdî ne hewce ye ku mirov zêde li ser girîngiya wî zimanî rabiweste. Ji ber ku ev girîngî xwe bi xwe derdikeve holê.

Gotinek pêşiyan heye ku dibêje: ***"Mileteki bê ziman weke miroveke bê dil e"***. Yanî çawa ku mirovek di pêvajoya jiyana xwe de nikare bê dil bijî, neteweyek jî nikare bê ziamn bijît.

Pêwendiyên me yên nivîskî, civîn, pirtûk, kovar û rojnameyên ku em dixwînin bi zimanê dewletên dagîrker in. Li vê dinyaya ku her roj û bi lez diguhere, jiyan bi parastina ziman û çanda neteweyî mimkin e. Lewma hewce ye mirovên welatparêz girîngiya parastin, pêşde birin û vejandina zimanê neteweyiye xwe her car bînin ziman. Ev miletên, ku di pêvajoya jiyana xwe de zimanê xwe ne parastin û jê xwedî derneketin, li rûyê dinyayê de pênaseya neteweyiye wan nema!

Yek ji pîvanên herî girînge saxlemiya wêjeya neteweyekê, xwendevanên wê ne. Dema ku xwendevan kêm bibin, diyar dike ku di wêjeya wî gelî de nesaxiyek heye. Ji gor vê pêvajoyê diviya doz û daxwazên zimanê Kurd, çand û hunera Kurdî bi rêk û pêktir derkevin rojevê. Her weke me bas kir, wêje, çand û zimanê neteweyî zor girîng in û Mirov dikare bibêje nîşaneya hebûna her neteweyekê, çand, wêje û zimanê vî neteweyî ye.

Ev doz di Rojhilata Navîn de bi awayekî eşkere diyar e. Wekî mînak, di welatekî mîna Îranê de ku pir neteweyiye û ji ber ku li Îranê, li gelên wek: Kurd, Fars, Tirkman, Azerî, Ereb, Belûç û gelek kêmaniyên din tê de dijîn. Lê bi sedema siyaseta şovinistî, cuda ji Farsan, çi neteweyeke din rê pê nehatiye dayîn ku bi ziamnê xwe bixwînin û ji nasnameya xwe xwedî derkevin. Lewma bo me Kurdan parastin û xwedî derketin ji çand û zimanê neteweyiye me dibe pir girîng û binirx be.

## Azadiya Başûrê Kurdistanê û ezmûna zimanê Kurdî

Her wekî me di destpêkê de jî bas kir, hetanî niho Kurdan tu deshilat û sîstemek birêvebirinê (Ji bilî 11 meh ji temenê kurte Komara Demokratîke Kurdistanê li Mehabadê û 12 sal azadiya Kurdan li Kurdistana Îraqê), ne bûne.Vê pirsgirêka mezin û zor tengasiyên din rê ji liv û xebata neteweiye me bi awayekî sîstimatîk bo hîn bûn û parastina ziman, çand, û wêjeya Kurdî girtine. Helbet Kurdan daye selimandin ku li gor derfetên ku jêre afirîne, di hemû warên siyasî, civakî û çandî de pêngavên pêşdeçûnê avêtine. Mînaka Komara Demokratîke Kurdistan û Azadiya Başûrê Kurdistanê evê rastiyê bi başî eyan diket.

Di heyamê 12 sal azadiya Kurdan li Kurdistana Îraqê de, di warê dewlemend kirina zimanê Kurdî de pêşketinên mezin çê bûne, lê ne bes in, gereke karekî mezintir û berfirehtir jêre bihê kirin. Azadiya ku di hemû waran de li Başûrê Kurdistanê pêk hatiye, li ser liv û bizava Kurdên perçeyên dinê ye Kurdistanê ku daxwaza mafên xwe ên çandî, siyasî û civakî dikin, bê bandor nine.

Di sedsala teknolojî û pêwendiyan de ku cîhan mîna gundekî biçûk lê hatiye û teknîkê xwe gehandiye her derê. Em dikarin ji bo vejandin û dewlemend kirina ziman, çand û wêjeya gelê xwe bi rêya wan dezgehan ve rolekî pir aktîv û erênî bilîzin.

Erka perwerde kirina sîstimatîk û hîn bûna zimanê zikmakiye me (Kurdî) bila bibe armanca tev liv û xebatên me li Kurdistanê û hemû deverên cîhanê de û derfet ji bo zarokên kurd – nemaze nifşa nû – were pêk anîn, ku li dibistan û xwendingehê hetanî asta bilinde xwendinê di zanîngehan de bi zimanê zikmakiye xwe bixwînin û binivîsînin û her wek ku ev mafe ji bo neteweyên serdeste Kurdistanê bi fermî hatiye nas kirin, dibe ji bo Kurdan jî wilo be.

## Gotinên mezinan

❍ Siwarê hespê xelkê her tim peya ye.
❍ Bo her mirovekê çi peyvek ji navê wî şirîntir û çi gencineyek li jiyana vî mezintir nine.
❍ Mirovê xayîn li bin erdê be baştire heta ku li ser erdê be.
❍ Sê tişt hene ku nabe direngî lê bête kirin. 1.Weşartina mirî, 2.Bi xêr anîna mêvan, 3.Bi şû dana kiça gihiştî.
❍ Bila mêrê egîd û xweşmêr qet tuxmê bê xîret û nebaş jê paş nekewin.
❍ Bexteweriyek ku li mal da peyda nebe, li kolanan da peyda nabe.
❍ Ev kesê ku hez çiyayê xwe neket, nikare ji deştê xelkê hez biket.
❍ Ev kesê ku tifê li dayîka xwe biket, tifê li hemû afretekê diket.
❍ Aferîn bo van kesan ku bi zimanê zikmakiyê xwe qise dikin û kilaman dibêjin û zimanê xwe wekî welatê xwe diparêzin.
❍ Jiyana bê jin wekî çirayeke bê ronahiye.
❍ Ger mal têr e, kaban şêr e.
❍ Bê qewmî ji qewmê xirab çêtire.
❍ Birîna xencerê çê dibe, lê birîna dijûnê çê nabe.
❍ Kurmê darê ji xwe nebe, dar xuloxe nabe.
❍ Nanê yekê bi avê da ço, got: bila xêra babê min bît.
❍ Heta mirovek neaxive, kes nizane ka derevîne an rast bêje.
❍ Mirovê wêrek serî bo çi tiştekê naçewîne cida ji heq û rastiyê nebe.
❍ Tirs birayê mirinê ye.
❍ Guleke biçûk baxçeyeke mezin dixemilîne.
❍ Baştirîn cih bo mirov, mala wî, bo şûr, kalan û bo dîtina dezgîran, rêya kaniyê ye.

# Xewa êxsîriyê û xewna serbestiyê

✍:Dara Natiq

Li ewarek direng dema ku payîz xemilî bû, bi pelên reng reng, evrên reş û tarî per û paskên xwe bi ser esmanê welat de kêşan, gure gura evran bêdengi dixendiqand û xencerên tîje birûskan birînên kevnên welat nû dikirn. Top û balefirên neyaran xelatên mirinê dirêşandin, çavên zarokan dibûn xwedîka agir û mij û morînê. Tirimbêlên rêya mirinê mîna marên jehrîn û birîndar li çîran çepên rêya gundê me dihatin pêş, destên tirsê çavên min girtin û min nekarî çi din bibînim.

Piştî demekê min çavên xwe vekir, ax! min çi dît! Ev Marê birîndar xeleka xwe li dora gundê me alandibû, li ber her derekê turembêlek sekinîbû, dayîkên girtî li pişta tîrokên hesin yên tirimbêlan gaziya zarokên xwe dikirin, lê destê wan ne digihîşt zarokan, di vê gavê zarokek sêvî digiriya û destên xwe ên biçûk ji dayîka xwe re dirêj kiribûn û digot: Ho dayê! Neçe, min nehêle! Kê dê şevan layî layiyan bo min bêje? Kê dê bibe diya min? kê dê bibe babê min? Lê dayîk bê bersiv dima.

Ez û pîre dayîka xwe li cem pencerê sekinî bûn, agirê dilê wan dayîkan û rondikên çavê zarokan cerg û hinavên min dişevitand.

Ez ketim nav hizrên xwe ên êxsîriyê, ên bindestî û roja dûr ya serbestiyê. Dîmena roja geş û her wisan roja reşa ***Çarçira***'yê û kaniya xwîna ***Vîyen***'ê ku Kevokên aştiyê bi xwînê xemiland in û ***Mîkonos***'a bêbextî û rojreşiyê û . . . dihatin ber çavê min.

Kul û kovanên bindestiyê hêdî hêdî li ser dilê min yê birîndar hêlûn çê dikir in. Ez bi dax û hesreta roja geşe azadiyê ketim xewê, xewa min agirê dilê min hênik dikir. Min seh dikir ez li esmanê welatê xwe yê azad difirim. Min dixwest şiyar bibim û rewşa welatê xwe yê azad bibînim, lê ez nekar bûm. Di vê gavê de, dengê xweşe kevokên Serhedê hate guhê min û çavên min hêdî hêdî vebûn, esmanek şîn û zelal di nava vê de rojek geş û azad bi min dikeniya. Ne cihê baveriyê bû, min seh dikir doma xewa mine, lê di vê gavê de dengê bilûra şivanekê bi ahenga ***va hatin Pêşmergên me***, ez weciniqandim. Min carek din bala xwe da esmanê evrên reş û tarî nemabûn, ev şînkatiyên ku bi destê neyaran hatibûn şevitandin dîsan wegeryabûn hembêz çiyayan û çem û kanî dîsan diherikîn. Bêhnek xweş û xerîb dihat, ev ne bêhna dûkel û xwîn û barûtê bû, belkî bêhna xweşe azadiyê, bêhna serbestî û rizgariyê bû. Min bera xwe guhest û mêze kir, ah! Çi qas dîmenek bedew û ciwan bû, ez matmayî û heyirî mabûm, lê dîsan ez bawer nebûm, keç û xurtên gundê me bi cilên reng reng xemilî bûn û govenda serbestiyê girtibûn. Çi qas ciwan bû ev govend, di vê gavê de dengekê gazî min kir û got: Ho! Lawo! Çima tu nahêy bigrî dîlanê çima tu nizanî îro roja ***şervanên aştî û azadiyê***, roja ***Pêşmerg***'**ên Kurdistanê** ye.

**Doma Şeva Yelda'ê, cejna ji dayîk bûna Dr.Qasimlo pîroz be**

Evî zatê mezin bi zane bûn û egîdî û cangoriya bê mînake xwe rêberiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û tevgera rizgarîxwaziya Kurdên Rojhilatê Kurdistanê dikir û bi vê pêşengiya domdare xwe dixwast xebata gel bigehîne gupika serekftinê. Dr. Qaimlo di vê pêvajoyê de bi siyaset û zane bûna xwe karî Partiya Demokrat û gelê Kurd li Kurdistana Îranê, ji gelek asteng û dijwariyên cur bi cur derbaz biket û bi her awayekê hawara Kurdên belengaz bigehîne cîhanê û bo yekemîn car saziyeke Kurdî, mîna Partiya Demokrat di Entirnasyonala Sosyalîst de bikete endam. Wî nemirî di jiyana siyasiye xwe de çendîn pirtûkên bihagiran mîna: Kurdistan û Kurd, Çil sal Xebat li pêxema azadiyê û zaf babetên dewlemende din . . . wekî xizîneyekê ji paş xwe bi cî hêlaye û bi vê xebat û baweriyên xwe, bo heta hetaye rêya xebat ji bo gihîştin bi azadî û jiyana bi serbestî ronahî kiriye.

Ji ber vê rastiya han bû ku dijminê zordar (Komara Islamî) nekarî çavê xwe ji ber ronahiya vî rêberê zana û aştîxwaz û navdar, weket. Lewma cehda temirandina ronahiya vî rêberê ku bibû hêviya gel û şoreşa Kurdistanê da, û di sala 1989'ê li bajarê Viyen a welatê Utrîşê bi terzekî necamêrî û dûr ji hemû pirensîpên mirovanetiyê, li ser maseya got û bêjên aştiyê teror kirin.

Lewma hewceye ku di her cejn û şahiyeke ***Şeva Yelda***'ê de tevî bîr anîna Dr. Qasimlo, gelê Kurd û xebatkarên Demokrat bi nîşaneya emegnasî û hurmet girtin ji vî rêberê ku wekî şemalekê xwe şewitand, da ku bi ronahiya xwe rêya jiyana bi serbestiyê nîşanî gel bidet, cejn û şahiyê bikin û bêjin ey ev kesê ku me bi dil tu hebandî, cejna ji dayîk bûna te pîroz be.

Weke tê zanîn xasmaniya dîrokiye ***Şeva Yelda***'ê di dema kevn de eva ye ku rê û resmekî kevnare Aryaîyan, rêvebirina cejn û xweşiya ***Şeva Yelda***'ê bûye. Li gorî wan zaniyariyên dîrokî, serbihoriya rêve çûna rê û resma ***Şeva Yelda***'ê dizivire bo berî ava bûna dewleta "Mad" ku 700 salan berî ji dayîk bûna "Mesîh" ji aliyê Zerdeştiyan ve rêve çûye.

Peyva "Yelda" Siryaniye, bi wateya zaîn, yan ji dayîk bûnê ye. Felsefe û merama esliye rêve çûna cejna Yelda'ê pûte dan û ogriyek bûye ku zerdeştiyan bi şînkatî û çandiniyê hebûne. Bi gotinek din cotkar û xwedî zevî û zarên çandinê, di demekê da ku hasil û berhema çandina sala pêşîn xirî ser hev dikirin, bi serbiranêya dûmahî hatina çandiniya salekê û bi hêviya barîna berf û baranê, bi hizrekî asûde û bêxem bi pêşwaziya zistanê û sala pêşe rove diçûn û şeva daviya payîzê, wekî serbiranêyeke xasmanî, dikirine cejn û şahî û govend. Hatiye gotin ku axir şeva payîzê hevdem e tevî ji daîk bûna mêhr "Mîtra". Zerdeştiyan ji dayîk bûna pîroze "Mîtra" di wê şevê de, bi şeva "Yelda" bi nav kirine û Yelda jî bi şeva "Wercawend" nav birine û ber vê hindê cejn girtine. "Wercawend" bi wateya paqijî, pîrozî û dûr ji kirêtî û ne başiyê ye". Li çaxê Zerdeştiyan da rê û resma Şeva Yelda'ê hêcetek bûye ku malbat û xizm û kes û kar, bi hêjayî û evîndarî li devra kalkên xwe bicivin û êmîşê ter û xarina xweş û bitam bixon û bi şahî û stran û dîlanê, dûr ji her cure xem û xudûkî û nexweşiyekê, wê şevê bi hev re derbaz bikin. Yelda di axir şeva meha Sermawezê da, ku sipêdehiya wê hevdem e tevî yekem roja zistanê, rêve diçe. Yanî bi roj avabûna dawîtirîn roja payîzê, dest pê diket û hetanî roj hilatina yekem roja zistanê dom diket.

Şeva Yelda dirêjtirîn şeva salê bi hisab tê û hemberî vê de jî roja yekeme zistanê û çilê mezin, bi kurttirîn roja salê tê hijmartin. Rê û resma şeva Yelda her wekî hate bas kirin di dirêjtirîn şeva sala "Felata" Îranê de rêve diçe. Niha ji aliyê: Efxaniyan, Tacîkan, Gurciyan, Ermeniyan, Îraniyan ve rêve diçe. her wisa pişkek ji Belûçên Pakistanê û Parsiyên Hindostanê, jî rê û resma Şeva Yelda'ê bi ser û bereke xasmanî rêve dibin.

Her çend rê û resma Şeva Yelda'ê gelek berî ji dayîk bûna "Mesîh" rêve çûye, lê Mesîhiyan di sedsala çardê ye Zayînî da, ev şeve hevdem tevî ji dayîk bûna Îsa Mesîh danîne. Ji ber wê ku tevî cejnên serê sala Mesîhiya û cejna mezine "Kelîmiyan", "Henokan" tenê çend roj navber heye. Wekî dizanin ew rê û resme wekî resmeke kevnar bo me bi dîharî maye û bi çavê qedr û hurmet ve tê mêze kirin û wekî pêwajoyekê, malbat û xizm û kes û karan bo xurt kirina tebahî û yêkdilî û qasa xweştivî bûna navbera wan, bi xweşî û şadî tê girtin.


**Çavkanî:**

**Govara Ilm û camie**

**Ferhenga Eelî Ekber Dêhxuda.**


# Gaziya welat

✍:Emîr Şuaîwend

Rojek zarok bûy û sawa,
Îro tu bûyî pêşmerge
Rojek hembêza diya te
Evîngeha dilê te bû,
Îro hembêza çiyayan
Ji te ra bûne evîngeh
Rojek şîrê dayika te
Aramiya can û giriyan,
Îro tifinga milê te
Aram diket
Cerg û dilan
Îro, dayik bûye niştiman,
Di hembêza vê dayikê
Kom bi kom
Gulên bedev gulên ciwan
Pêşmerge, ji xwe re
Kirine mêvan
Ho Pêşmerge !?
Tu dizanî payîz
Ji ber xemla roja te
Hêj pelgên xwe
Newerandine?
Yan tu dizanî ?
Reşe bayên payizê
Hêj nekarîne
Li hembêza zozanan
Bidizin sosin û beybûnan?
Ho gaziya welat
Ey behra bê sînora evînê
Lê birêne
58 pelpelîskên evîndar
Li der dora bûka baranê
Çi qas civan. . .
Ji te ra, Ey Reqîbê
Distirin
Û hembêz hembêz gulên
sipî
Bi rengê te
Bi rengê aştî
Û bi rengê sermawez
Dikin xelat
Û dirêşînin
Bi ser bejna welatê te
Dê tu rabe
Xemla xwe girêde
Bi çek û rextan
Li serê çiyayên kurdistanê
Bilêlîne vê çeka xwe
Bila dengê vê
Bibe mizginiya xilasiyê
Û serbestiyê

Xweş biket
Dilê zarokên sêvî û
Taze bûkên dax dar
Û gritiyên
Li ber guneha azadiyê
Û her wisa
Pîroz biket roja te
Hey Pêşmerge

# Evîngeha bin dara Çinarê

✍:Mihemed Resûl Hesenpûr

Qendîl eliheke birîndar bû, kurîşkên ser eniya wî bibûne girê û ber bi rojhilat dinêrî. Çavên vî wekî du golên xwînê sor bibûn û te digot qey burkaneke ku peşqelên agir bo her aliyekê belav diket.

Di kêleka Qendîl'ê de çend darên hişk bûyî destên xwe bo aliyê esman bilind kiribûn û tika û lahî dikirin. Li derdora wan de komek darên serbiriyayî, wekî komek singan di kûrahiya axê de çeqiya bûn.

Rê ewrazeke kûr bû ku ber bi jor dikişiya, du aliyên rê bi gulên al al û şilêran wekî du evîndarên dil birîndar serê xwe gihandibûne ber peleguha hev û du. Sele Beran kit kite di nava şînkatiyê de weşartko dikirin.

Deştahî mijûlê çinîna gul û peligên şîn bû, da ku bejna Qendîl'ê pê bixemilîne. Evîndar hêdî hêdî lingên xwe li pey xwe radikêşand û avirek daye aliyê daran û axînek kûr ji kûrahiya dilê xwe kişand. Darên bê guneh ketibûne ber êrîşa bivirên bê rehm û tevî lêdana her bivirekê, birînek di hundirê wî de serî dihilanî û tevî cokên di nava sîngan de dikete giriyê, coke jî çikiya bûn û bi salan bû ku rondik ji wan xeyîdî bûn.

Dîmena dar û berên kavilan serbarê birînên dinê bûn û vî bi dilekî pir hesret wa çavên xwe miqandin û got:

Ax û sed dax! Demek bû ku dar û berên vê deverê di hembêza hev de rihet raketibûn û dest dabûne destê hev û malên xaşik çê kiribûn. Bejna darên şîn kiroşkî dikirin, cokên ku niha ziha bûne, hingê teratî û nêmizgeha avê lê digeriya. Çîmenê derdora wan ev der xemilandibûn.

Ev bejn bilindê bi heybet li bin sîbera dar çinarê de ketibû evîngeha pirtûkê û dixwand û bi dengê bilind dubare dikir. Ji aliyeke din komek ciwanan gengeşe dikirin û digotin: Erê ev mamostaye (Qasimlo) dîn nebûye!? Yek ji wan bi dengek bilind gazî mamosta kir û got: Tu ji kêra dixwînî? Xwe kes bal te nine!

Mamosta bersiv da û got: çawan ji kêra! Bo daran, bo keviran, bo wan çiya û geliyane, bo esmanê şîne vê Kurdistanê û . . . Ma hûn nizanin zarokên me ji Elf û Bêyan hatine bê par kirin . . . Bila em ji dar û beran ra bêjin û ewan hîn bikin ku çawa peyvan biparêzin. Eger na, vê rojek bêt ku ne pîrek, ne ciwanek, ne jî zarokek, nikare Elf û Bêyan ji hev cuda biket. Lewma dibe kune ber û eteka vî çiyayî tijî ji tîpên: K,U,R,D, bikin û her rojekê ku hewce bûn, derînin.

Ciwanan got: Bi xudê ecêbe!! Mamosta got: Ecêb nine ez evîndarê wan dar û kevirane me! Dîn û bendewarê wan çiya û geliyane me. Eva ez dibînim li ber çavê we xuya nine. Ez dûr dinêrim û dizanim ve pêdvî bi hîn bûnê heye. Lawên çav geşe min, hûnin hêviya pêşeroja wî gelî, qet guh nedne gotinên dijminan, zimanê wan jehrîn e û dixwazin we ji zimanê dayîkê, ji welat, ji dîroka bav û bapîran warî bikin. Bila ev her bêjin, hûn guhê xwe nednê. Bi salane ku ev zirneya bê pîk lê didin û dihola zik diriyayî dikutin û dibêjin: Ve esl û binetar nine û hûn têjikên Roviyan in! We welat tu neye û hûn bê ziman û bê dîrok in!

Bapîrên me ji wan hatine dest, lê zimanê wan hate birîn û ava tehil bi gewriya wan da kirin. Lê bila ev baş bizanin ku ez kurê medya me û welatê min jî wan re xerîbe û dibê jê derkevin. Lêre kevirek nine ku ev serê xwe pê bişkênin. Vê rê ji wan bizir be û li ser raze beran re bikevine xwar û pirtî pirtî bibin. Sîbera darên welatê min jî ji wan re xerîbe û nikarin demekê li bin de bêhna xwe wedin û xuha westyana xwe damal in. Bil Bil jî ji wan re na xwînin.

Çav geşên min! Guh ji min bigrin: Hûn kevirê xîmê pêşeroja vî welatî ne, dibe hûn kevir li ser kevir danên û welatê xwe ava bikin. Eger herifî, dil giran nebin, carek din, hezar carên din vî karî dubare bikin.

Rast e ku mij û moran, bahoz û babelîsk, reşe ba û şeva zilmat e, lê her tiştekê dawiya xwe heye û dibe di sînorê xwe de bihête rawestandin.

Başe ve ji çi kêm heye? Xwedî dîrok ninin, ku hene, xwedî ziman ninin, ku hene, zimanê ve ji zimanê neyaran xaşiketir nine, ku heye, xwedî welat ninin, ku hene, lê welatê ve wekî bûka bê miraz e . . ..

Feleka xayîn çi din bi wî mamsotayî rewa nedît û ji evîngehê cuda kir. Lê evî dîsan her şîretên xwe berdewam dikirin. Neyaran eve jî ji wî rewa nedîtin û wê carê bi aliyê xelkekî bîhanî dûr êxistin û li vê derê jî nehêlan bisitir e. Daska mirinê ya şev hebînan li cendekê wî dan û evî kire hewar, kes di hawara wî de nehat û kesê bera xwe nedayê. Bi neçarî dest li ser birîna xwe danî û bera xwe daye Rojhilatê, dûr dûr gazî kir û got: Xweştiviyên min! Li min biborin, neyaran derfet nedane min, min gelek got û hawar û gazî kir, lê nizanim ka deng da yan na? Li min biborin, çend dilopek xwîn li demarên



min de mane, ezê ji we ra bişîn im bila kêmek tîniyatiya ve bişkêne. Li min qebûl bikin, bila yadigarek biçûk be bal we û bibîte al alek û sing û berê çiyayên bilinde welatê min pê bixemlîn in.

Stêrkan şîn û tazî girêdan, çiyayên welat hor hor digiriyan û rondikên şor diherikandin, masiyan xwe di bin kewza ava kanî û çeman de mat kiribûn, beqan jî di nava golmekan de diqurndin, Kunda biyom jî pîqe pîqa vê bû û dikeniya, şev peristan jî girtibûne govend û dîlanê.

Dara çinarê konê sîbera xwe veda bû û rehên xwe di kûrahiya axê de çeqandibûn. Bivirê nezan wekî kelbên gurê har û birsî li gerdena daran diçeqiya û yek yek diqetandin. Ku nobeya dara çinarê hat, vê got: Evîndar te cî nahêlim xweştiviyê minê ezîz, ger bejna min jî bibirin rehên min bi kûrahiya axê de çeqiyane û di şeqa keviran de çûne xwar û her yek ji wan vê bibin hezaran şêne û çinarên din.

Nişkê ve dengekê kire hawar û hemû aliyek tevlîhev bûn, dar, kevir, çiya, mamosta bi pirtûkên xwe ve bi hawar û yekdeng dikir gazî û digot: Ez jî li gel we me, hezaran firsex ji ve dûr, li welatê gor xerîbiyê da, dikeme hawar, da ku perên pirtûkên min di nav dar û berên wî welatî de belav bibin û her yek ji wan rûpeleke dîrokê bo ve hildin û bila li derdora cokê de bêne xwar û mêzeyî daran bikin û bibînin ku daran dîsan çilo dane û li paş xwe binêrin û bibînin ku Qendîl her wisan ser bilind rawestiya ye û serê wî di nav seran de diyar e û çirûskan bo her aliyekê belav diket.

# Biryarên Kongira PENa Navneteweyî li ser kurdan

**Kongreya 69an ya PENa Navneteweyî li paytexta Mêksîkoyê bi amadebûna 250 beşdaran ve, ku nûnerên 65 Navendên PENên Neteweyî ne, ji 22 heta 28'ê Mijdar'a sala 2003an pêk hat. Gelek hevdîtinên berdar, gotûbêjên bi nirx û civînên wêjeyî Kongreya îsal xemilandin. Ji 32 biryarnameyên (rezolûsiyonên) Kongreya 69an ya PENa Navneteweyî, 3 biryarname bi Kurdan ve girêdayî ne.**

### Biryarnameya li ser Mafên Zimên ji bona Kurdên Tirkiye, Îran û Sûriyê

*Civîna Giştî ya Beşdarên Kongreya 69an ya PENa Navneteweyî li paytexta Mêksîkoyê, Mexico City, 22-28 Mijdara 2003an*

**Bi bîr tîne**, ku civaka bi zimanê kurdî dipeyve, bi giraniya erdnîgariya xwe di navbera çar dewletan de dijî: Komara Tirkiyê, Komara Îslamî a Îranê, Îraqê û Sûriyê;

Herweha **bi bîr tîne**, ku ji bilî li Îraqê, zimanê kurdî û wêjeya kurdî ji hêla van dewletên din ve nayê parastin û di dibistanan de perwerde pê nayê kirin;

**Bawer dike**, ku mafê axaftin, xwendin û perwerdekirina bi zimanê zikmakî mîna mafekî jidayîkbûnê ye û pîvana gotûbêjên aştiyane di navbera gelan de ye;

**Bawer dike**, ku lewma mafê Kurdan heye wek hemû neteweyên cîhanê bi rêya astiyane biryara xwe bistîne, ew kîjan zimanî dixebitîne û kîjan wêjeyê dixwîne;

**Bi tundî tîne bîra** hemû hukumetan, ku li gor armanca UNESCO di derheqa Pirrengiya Çandî de mafên bingehîn û wekheviyê ji bona her beşekî hemwelatiyên wan in û ew zengîniyê didine civaka sîvîl, hevqenciya komên ku bi zimanên curbicur diaxivin, asantir dikin û bi vî awayî rê didine pêşketina aştiyane û demokratîk;

Hukumetên van dewletan **hişyar dike**, ku ew divêt mafên bingehîn yên hemû zimanên kêmneteweyan di herêmên wan yên neteweyî de biparêzin û bi vî awayî nehêlin, ku aloziyên bêkêr di navbera çandan de zirarê bigihînin xaka dewletan;

**Banga** birêvebirên Tirk, Îran û Sûrî **dike**, ku ew dewlemendiya ziman û wêjeya kurdî binasin û hemû qanûnên li dijî pirrengiya xwezayî di ware zimanan de rakin. Di heman demê de **banga** birêvebirên Îraqê **dike**, ku ew jî belêna (soza) xwe cihbicih bikin û piştgiriya zimanê kurdî bikin.

### Biryarnameya li ser Sûriyê di derbareya binçavkirina Merwan Osman de

*Civîna Giştî ya Beşdarên Kongreya 69an ya PENa Navneteweyî li paytexta Mêksîkoyê, Mexico City, 22-28 Mijdara 2003an*

**Protesto dike,** ji ber ku binçavkirina nivîskar, helbestvan û endamê Navenda PENa Kurd birêz Merwan Osman hên jî dewam dike û Dadgeha Ewlekariya Dewletê ya Sûriyê doza wî vekiriye û wî bi 'cudahkirina dîn û nijadan' tawanabar dike;

**Bi qelem dike,** ku Merwan Osman 10'ê Kanûna sala 2002an bi boneya xwepêşandana aştiyane hatibû binçavkirin û eger wek gunehkar were dîtin, girtineke heta 15 salan jêre lêdikeve. Ev xwepêşendan ji hêla Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyayê (Yekîtî) bi daxwaza parastina mafên Kurdên ku hemwelatiyên Sûriyê ne, pêk hatibû;

**Bawer dike,** ku dewamkirina binçavkirina Merwan Osman li dijî mafê azadiya raman û civînan e; ev maf di Peymana Navneteweyî li ser Mafên Civakî û Ramyarî de (International Covenant on Civil and Political Rights) hatiye misogerkirin û Sûriyê bi xwe jî ev Peyman destnîşan kiriye;

**Daxwaz dike,** ku birêvebirên Sûriyê bi şêweyekî mirovane - heta Merwan Osman binçavkirî bimîne – pêre bidin û bistînin; Banga rizgarkirina Merwan Osman ya lezgîn û bê merc **dike**.

### Biryarnameya li ser Tirkiyê di derbareya Girtina Leyla Zana de

*Civîna Giştî ya Beşdarên Kongreya 69an ya PENa Navneteweyî li paytexta Mêksîkoyê, Mexico City, 22-28 Mijdara 2003an*

**Xemgîniyeke kûr nîşan dide,** ku serkêşa mafên Kurdan, siyasetvan û nivîskar **Leyla Zana** hên jî di girtîgehê




de ye, herçend 21'ê Mijdar a sala 2003an êdî dozguhdarkirina nehan li hember wê çê bûbû;

**Bi qelem dike,** ku Leyla Zana hatibû tawanbarkirin, ku ew endama Partiya Karkerên Kurdistan (PKK) bû, lêbelê di doza wê de lihevnehatinên berfireh hebûn û lewma PEN digel çavdêrên din gihîştine vê encamê, ku Leyla Zana ji ber piştgiriya mafên Kurdan yên aştiyane û qanûnî hatibû cezakirin;

Vê berxweketinê parve dike, ya ku ji hêla saziyên navneteweyî û berî her tiştî Dadgeha Ewropî ya Mafên Mirovan ve hatiye diyarkirin, ku doza Leyla Zana û sê siyasetvanên Kurd, yên ku di sala 1994an de bi hev re hatibûn cezakirin, dozeke ne durist bû; herweha dozguhdarkirina nû jî wek berê bi guman e;

**Bal dikişîne,** ku Leyla Zana di girtîgehê de bû, gava di sala 1998an de du salên cezayê bi ser cezayê berê de hatibûn zêdekirin; sedema cezayê nû nivîsên wê ji girtîgehê bûn û ev yek perçiqandineke din ya mafên mirovan e, bi taybetî Beşê 19 yê Peymana Ewropî li ser Mafên Mirovan, yê ku Tirkiyê bi xwe jî destnîşan kiriye;

**Herweha bal dikişîne**, ku niha li Tirkiyê doz li dijî gelek nivîskar û weşangerên din jî hatine vekirin, ji ber ku ew bi kêşeya kurdî ve mijûl dibin;

* **Banga** wan birêvebirên dadê dike, yên ku serperiştiya doza Leyla Zana dikin, ku ew heta encama dozguhdarkirina nû bi lezgîn were berdan;

* **Daxwaz dike**, ku dadgeh rexneyên navneteweyî bi giranî di ber çavan re derbas bike, hem rexneyên di warê doza berê de, hem jî rexneyên teze, ku li hember dozguhdarkirina nû derdikevin holê;

* **Hêvîdariya xwe nîşan dide,** ku encama doza niha wê rizgarkirina Leyla Zana be;

* **Herweha bang dike,** ku qanûn û zagonên Tirkiyê ji nû ve werin nirxandin, da ku bingeha cezakirina nivîskar û weşangerên ku li gor mafê raman û civîna azad dixebitin, nemîne; hukumeta Tirkiyê ev maf ji xwe re kiribû armanc û bi vî awayî Peymana Ewropî li ser Mafên Mirovan destnîşan kiriye.

**Jêder: www.pen-kurd.org**

agirî

Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne Hejmara 2, December'a 2003

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

www.kurdistanmedia.com/kurmanci.htm

Email:
Rojnama_agiri@yahoo.com

Fax: 0012703425105

**Bo Agirî binivîsînin**

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

**Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:**

Destêwerdana rênûsa nivîsan biket. Van mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.



## Pîrozbahî

Sexmeratî hatina sersala nû ya 2004'e Zayînî û cejna ji dayîk bûna Îsa Mesîh, ji aliyê rojnameya Agirî ve tevî bedevtirîn pîrozbahiyan ji hemû gelên cîhan û Kurdistanê, hêviya saleke pir xêr û xweşî û dûr ji arîşeyan bo hemû aliyekê daxwaz dikin û bila sala nû bibe sala serketina aştî, azadî û tenahiyê li hemberî şer û dîktatorî û terorîzmê.

# Şeva Yelda'ê, cejna ji dayîk bûna Dr.Qasimlo pîroz be

✍:Mihemed Salih Qadirî

Xweşî û şahiya **Şeva Yelda**'ê bo gelê Kurd û xebatkarên demokrat ev afirandin û xasmaniye heye ku di **Şeva Yelda** ya sala 1930'an de berî vê ku tîrojkên rojê bipişkivin, li malbateke welatparêze Kurdên Urmiyê de mizgîniya ji dayîk bûn û dest pê kirina jiyana helalzadeyekê hate ragihandin û ji ber dilovanî û bedeviyê, nav lê danîn: ***Ebdulrehman Qasimlo***.

Ev Qasimloyê ku li devera **Medya** û herêma **Zerdeşt**'ê kale hizrvanê: Hizra baş, gotina baş û kiryara baş, di kêleka Kela **Xanê Dim Dim** û di meydana xebata Simko'ê Şikak de hatibû dinê, paşî xwe famandinê, ji kûratiya dil ve seh bi bindestî û bê pariya gelê xwe (Kurd) kir û tevî xwe teyar kirin bi çeka zanistê û bi dawî kirina qonaxên xwendinê, ku heta pileya Dukturayê ço pêş, dakete nava meydana xebata




azadîxwaziya gelê Kurd û zêdetir ji 40 salan ji temenê şirîn û bihagirane xwe di vê pêvajoyê de bihorand.

**Doma wê 17**

# Girtina Sedam Husên, Serok Komarê berê ye Îraqê



Demijmêr 8:30 deqîqe a piştînîvroya roja şemî 22'yê Sermawez'a 1382'ye Rojî Sedam Husên, Serok Komarê berê ye Îraqê li veşartgehekî nêzîk bajarê Tikrît'ê ji aliyê hêzên Emerîkayî ve bê teqe û lêkdan hate girtin.

Girtina Sedam Husên li rastî de wekî xala dawî hatin bi deshilata Partiya Beis li Îraqê tê hesibandin û bû sedema kêfxweşiya xelkê wî welatî li bajar û deverên cuda cuda de.

Bêşik qedera Sedam Husên û hukûmeta Beis çarenivîsa her dîktator û deshilateke serberedayî û hemû wan kesane ye ku li hemberî azadî û mafê miroviye xelkê welatê xwe de radiwestin û li encam dana kiryarên cinayetkarane xwe na parêzin û ji bo domandina deshilata xwe penayê bo her cure riftareke hov û nemirovane dibin.